

پارێزگاری پێشووی سلێمانی:
**دەردی یەکێتی بە هێرۆخان چارە ناکرێ**

12 ◀

باوەڕی پێی نییە
**لای بەڕێز نەشتەرگەری جوانکاری هێڵی سوورە**

9 ◀




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdaw'ê bêtir dizanin

**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

**Hejmar / Nr. 36** | 16 Adar / März 2010 | **www.rudaw.net**


BDP li ser rexneyên Çelîk bo Rûdaw:

## Xwezî rolek din ji me bihata xwestin



Hüseyin Çelik



Gülten Kışanak

**Cîgirê Serokê Giştî yê AKP'ê Hüseyin Çelik partiyên DTP û BDP tewanbar kir ku ew bi realîstî û weke ku pêvajo dixwaze tevnagerin û dibeje tevî ku wan pêşniyaza danûstandinan li BDP'ê jî kiriye, lê "ew" weke muxatab Imralî û Qendîl nîşanî wan didin. Çelik pirsî: Gelo Hikûmeta Îngilîstanê çû bi IRA'yê re rûnişt ku ew herin bi PKK'ê re rûnin?**

**Hevseroka BDP'ê Kışanak di hevpeyvînek bo Rûdawê de bersiva Çelik da û got ku ev tometbarkirin berdewama helwesta AKP'yê ya neçareserkirinê ne û partiya wan hertim bo danûstandinan amade bûye. Kışanak got ku muxatabê çareserkirina pirsa kurd ew in û xweziya xwe bi wê yekê anî ku rolek mîna ya Sinn Fein bo wan jî bihata qebûl kirin.** ▶ 2

### Bo bîranîna Helebce: Jiyan li Lugo û Bolonia jî radiweste

Îro (16'ê Adarê) di 22. salvegera qetliyama Helebceyê de bo cara yekê li derveyî welat jî jiyan bo demekê radiweste. Li gor Cîgirê Serokê Rêxistina Qurbaniyên Helebce, Aras Abid, wê îro li herdu bajarên Îtalya Lugo û Bolonia jî qurbaniyên Helebce bên bibîranîn û bo dema çend çirkeyan hatin û çûyîn li wan bajaran raweste.

Bajarê Helebce jî xwe ji bo merasîmek meznin a bîranîna kîmyabarana bajêr amade dike û xelkê wî bajarî jî dixwazin îsal bi coşeke mezintir vê bîranînê sazbikin. Bi taybetî ji ber ku berpirsyarê komkujiya bajarê wan, Elî Hesen El-Mecîd ku di nav kurdan de weke "Elî Kîmyawî" tê navkirin, ji aliyê Dadgeha Bilind a Tawanan li Îraqê sizayê sêdaredanê jê re derket û beriya demekê sizayê wî hat bicîkirin. ▶ 12

### Piştî parçebûnê yekbûn

Endamên baskên PDK-Îran bo yekbûnê zorê didin serkirdên xwe ▶ 3

### Nakokiyên li diyasporayê

Zarokên kurd û tirk li Ewrûpa jî dijminatiya hevdu dikin ▶ 7

### Mamosteyek zîrek

Medyaya 11 salî niha jî dersên matematîkê dide zarokan kurd ▶ 10

### Homoseksûelên kurd

Hêdî hêdî tabû dişkin û hevzayendên kurd jî mafê xwe dixwazin ▶ 16

## Serokê grûpa SPD'ê ji pêşketinên Kurdistanê razî ye

Di hevpeyvîneke li gel Rûdawê de, Cîgirê Serokê Grûpa SPD'ê di parlamena almanî de, Gernot Erler behsa rewşa erênî li Herêma Kurdistanê kir û rola kurdan di nav Îraqê de bi giringî destnîşan kir. Erler got ku giringiya rola kurdan di Îraqa nû de bi wê yekê ve girêdayî ye ka ew bi xwe dixwazin çi rolê bilîzin û got ku herçiqas zelal bibe ku kurd naxwazin sînorên Îraqê bigorînîn, ewqasî baweriya bi Kurdistanê jî mezintir dibe. Erler anî ziman ku Hewlêr bo wan cihekî balkêş e û ji konsolxaneya ku di 2009'an de vekirine jî gellekî razî ne. Di derbarê pirsa Kerkûkê de jî Erler destnîşan kir ku pewistî bi çareseriyek yasayî heye. ▶ 11

## Suryaniyên Ewrûpayê li Kurdistana xwe vedigerin

Di demekê de ku bi milyonan kurdên Bakurê Kurdistanê ji cîh û warên xwe reviyan e û li derdorên bajarên Tirkiyeyê bicih bûne û bi sedhezarên wan koçî Ewrûpayê kirine, beşekî civaka Kurdistanê dest bi vegera bo gundên xwe kirine. Suryaniyên Bakurê Kurdistanê ku di dehsalên borî de ji gund û bajarên xwe li Bakurê Kurdistanê derketin û li seranserê Ewrûpayê bicih bûn, ji nû ve berê xwe didin welatê bav û kalên xwe. Di van salên dawî de li gellek gundên Xiristiyaniyan avahiyên nû hatin avakirin. Ji bo piştevaniya kesên Suryanî ku dixwazin vegerin, li Almanyayê komelek "bo vegara welat" jî hatiye avakirin. ▶ 6







## Hevseroka BDP Gülten Kışanak:

# Xwezî rola Sinn Fein ji me bihata xwestin

### Kışanak ji Rûdaw re daxuyand ku ew muxatabê pirsgirêke ne û ti caran ew ji çareseriyê ne revyane

Di hevpeyvîneke li gel AKnews de Cîgirê Serokê Giştî yê Partiya Edalet û Geşedanê (AK Parti) Hüseyin Çelik partiyên DTP û BDP tewanbar kir ku bi realîstî û weke ku pêvajo dixwaze tevnegarin. Çelik balê dikşînê ser pirsgirêka Îrlanda Bakur û dipirse ka gelo li Brîtanyayê Hikûmeta Îngilîstanê bi IRA'yê re rûniştiye? Çelik bersiva pirsa xwe bi "Na" dide û dibeje ku Hikûmeta Îngilîstanê bi Sinn Fein re rûniştiye û dibeje ku wan jî daxwaza danûstandinan ji BDP'ê kirine, lê "ew" weke muxatab Imralî û Qendîl nîşanî wan didin.

**Rûdaw: Çelik rexneyan li we digre û dibeje ku divê were fam kirin ku pirsa kurd pirsa duhî nîne û pirseke sedsalî ye, ku nikarî di demek kurt de were çareserekirin û pêwistiya wan bi demê û piştgiriyê heye. Ew we tewanbar dike ku li şûna têgihiştina vê yekê aliyê we ketiye nav helwestên sabotekirina pevajoyê.**

Gülten Kışanak: Derbarê çareseriya pirsgirêkê ew rexneyan dikin û dibêjin ku me firset nedaye wan. Lê li dîroka Tirkiyê binêrin, di dirêjeya dîroka Komara Tirkiyê de tenê partiyek du car li ser hev pirraniya dengan bistîne û li desthilat bimîne – ji dervî ANAP ku paşî Darbeya 12'ê Îlonê Di dema Özal de hate desthilatê – desthilatek din wek AKP'ê nîne. AKP du car li ser hev bi pirraniya dengan hatiye desthilatê. Derfetên çareseriyê jî ji vê demê baştir ti carî çênebûne.

Li hemberî van derfetên erênî, eger tiştek nehatî kirin tenê wek exlaqê siyasî jî divê AKP xwe berpirsyar bibîne, anjî bi hindikayî bigota: "Li hember van şertên erênî me tiştek nekir, em xwe rexne dikin." Em li bendê bûn li cihê ku bibêjin derfet nedan me, herî hindik bibêjin ev bû 8 sal em li ser desthilat in, evqasî derfet ji me re çêbûn, lê me tiştek nekir.

**Çelîk dibeje ku wî di hevdîtinek li gel berpirsyarên BDP de ji wan re gotiye ku BDP partiyek lêgal a di parlamenê de ye û ew pêşniyaza bi we re axaftinê dikin, lê hûn vê yekê qebûl nakin û berê wan didin Imralî û çiyayê Qendîlê?**

Di vê mijarê de jî helwêsta me ron û eşkere ye, li hemberî ew kesên ku bi rastî aştî û çareseriyê dixwazin helwêsta me eşkere ye. Tevî hemî astengî û zordariyên dewletê me dengê xelkê xwe stand, em ketin parlamanê. Di vir de em li hember daxwazên gelê xwe berpirsiyar in. Ji bona vê çendê herkesê aştî û çareserî bixwaze deriyê me ji wan re vekiriye. Ger kesekî heya niha xwestiye di derbarê çareseriyê bi me re bide û bistîne û me ew yek red kiribe,

### Eger bê xwestin bi şeytan re jî em amade ne rûnin

dikarin bêjin. Ger kesek AKP'ê hebe ku heya niha xwestiye bi DTP an BDP'ê re biaxife û me qebûl nekiriye, dikare derkeve li pêşiya raya giştî û eşkere bêje. Du sal û nîv in li her derê em dibêjin ji bona aştî û çareseriyê deriyê me ji herkesî re vekirî ye, eger bê xwestin bi şeytan re jî em amade ne rûnin.

Berde dialog û çareserî, sal û nîveke desthilata Tirkiyê bi durustî silav jî nedaye perlameterên me, em li hember rastiya desthilatek wiha ne, formalîte du car bi me re rûniştine, dervî vêna qet bi me re neaxifîne. Îro carek din em dixwazin ji her kesî re bêjîn, ji bona dialog û çareseriyê em amade ne bi her kesî re rûnin, bi herkesî re bidin û bistînin. Em muhatabê vê pirsgirêkê ne, bi her awahî çareseriyê dixwazin. Gelê me ji bona vê armancê dengê xwe dayî me, em rêkirine parlamanê, emê bi her awahî bersiva vê pirsê bidin.

Dema ev tê gotin rastiyek din jî heye divê neyê ji bîr kirin. Ne tenê em, belkî tevaya demokratxwaz û kesên tereftarên aştiyê vê rastiyê dibêjin: 30 sal in li Tirkiyê şerek heye, di vî şerî de aliyên şerker hene, PKK heye, birêz Öcalan heye, evan di çareseriya pirsa kurd de faktorên bingehîn in. Eger evana nebin perçeyek ji pêvajoyê, çareserî nagihe armanca xwe. Ev ne tenê ji bona me, li her derê dûnyayê bi vî awahî ye.

Hêj du hefte beriya niha li ser danûstan û dialogê me konferansek li dar xist, ji Başûrê Afrika, Îspanya mêvanên beşdar hebûn. Du roj li ser vê mijarê em axifîn. Teva ev digot: "Heya bi aliyên şer re, bi aliyên xwediyên pirsgirêkê re dialog neyê danîn, çareserî ne mimkun e.

**Çelik xwe mafdar dibîne û dibêje ku li ti deverên dinyayê dewlet naçe bi çekdaran re rûnane û bazarê nake. Çelik dipirse ka li Brîtanyayê Hikûmeta Îngiliz bi ÎRA re rûniştiye û dibêje ku Hikûmeta Îngilîz bi Sinn Fein re rûniştiye. Ew we rexne dike ku hûn berê wî hertim didin Öcalan û vê nêzîkatiyê rast nabîne.**

Em dizanin ku hikûmeta AKP'ê pêvajoya çareseriya li Îrlanda ji nêz ve dişopîne, kesên di vê pêvajoyê de cih girtine hatine Enqere, bi hikûmetê re hevdîtin çêkirine. Evana em dizanin, me jî di konferansa xwe de ew bang kirin, kesên înglîz ên ku di pêvajoya Îrlanda de cîh girtine û tevlî konferansa me bûn tev vêna dibêjin: "Dema em bi Sinn Fein re diaxifîn me dizanî em bi IRA re diaxifin. Me ev rastiye da ber çavên xwe û pêvajo dest pê kir. Derfetên vêna me afirandin, me ji kesî re negot neçe bi IRA re nede û nestîne, berevajî vêna me got herin bi wana re biaxifin, nêrîna me ji wana re bêjin û nêrîna wana ji me re bînin, me ev zemîn çêkir." Her hemî bi zimanek zelal vêna dibêjin.

Heya niha ji me re weke BDP derfetek weha nas nekirine, em dixwazin hikûmet ji mere bêje, belê hûn dikarin nêrînên PKK'ê ji me re bînin û nêrînên me ji wan re bibin, em ê vêna wek erkek bi cîh bînin. Lê berde xwastekek weha nîne, 2000 endamên me hatine girtin, ji partiya me re firseta siyasetê jî nadin.

Di pêvajoya Îrlanda de, ji bo ku Sinn Fein bibe şaxê legal ê IRA'yê, hikûmetê zemîn çêkir, destek da Sinn Fein, rê jêre vekir, xwezî ji me re jî derfetek weha hatiba nasandin! Xwezî Hikûmeta Tirkiyê gotiba niqaşên ku em li vir dikin bibin ji PKK'ê re, ên wana ji me re bînin. Bibin qasid. Em amade ne bibin qasidê aştîye.

### Em xwediyên vê pirsê ne, em muxatab in, berpirsiyariya vêna hest dikin

**Başe naxwe çima AKP pêdivî dibîne ku van daxuyaniyan bide?**

Hikûmeta AKP'ê ji çareserî û dialog zêdetir, dixwaze ku kurd siyasetên AKP'ê bipejirînin, li dû polîtîkayên AKP'ê bimeşe û di siyaseta nehêlana kurdan de li cem AKP'ê cîh bigire. Em tiştekî wiha nakin, heya niha me nekir û ji vir û wêda jî qebûl nakin. Eger xwestek çareserî be, heya dawiyê em pêre ne, lê xwestek tasfiye be qet ne pêre ne.

Zîhniyeta AKP'ê zîhniyeta tenê xwaziye, dibê tenê ez heme, tenê çareseriya min heye, tenê nêzîkatiyên min giring in, tiştê ez dibêjim di cîhanê de tiştê herî rast e, her kes min bişopînin, di bin fermana min de bin, her kes bê şert min destek bikin. Di vê hizrê de ti çareserî dernakevin.

Tevî van hemiyan, tevî hemû astengiyên pêşiya pêvajoya çareseriya demokratîk, tevî ku partiya me hat girtin û du hevserokên partiya me siyaset ji wan re hat qedexe kirin û bi hezaran endam, rêveber û şaredarên me hatine girtin, lê em her dibêjin deriyê me ji çareseriyê re vekirî ye, em xwediyên vê pirsê ne, em muxatab in, berpirsiyariya vêna hest dikin, bo çareseriyê jî em amade ne, em li vir in, kerem bikin....

**Hevpeyvîn: Medya Deniz**

Karîkatûr




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadkurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Memo Celâl

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.






# Endamên baskên PDK-Îran: BIBIN YEK!

Sekreterê Giştî yê PDKÎ Mistefa Hicri

Sekreterê PDK Xalid Ezizi

Sabîr Qadirî

Di daxuyaniyekê de komîta demkî (Kampanya Yekbûna Partiya Demokrat) daxwaz ji herdu baskên wê partiyê dike ku bibin yek. Endamên her du baskan jî piştgiriyê didin wê kampanyayê û dixwazin pirsgirêkên pêşberî yekgirtina partiyê çareser bikin.

Piştî derbasbûna çar sal bi ser perçebûna Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, alîgirên wan du aliyan ji bo yekgirtina her du baskên veqetiyayî hewlê didin.

PDKÎ di sala 1945'an de ji aliyê Qazî Mihemed yê Serokê Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê hat avakirin, heta niha çar perçebûn di nav wê partiya Rojhilatê Kurdistanê de çêbûne. Yek ji wan baskan bi navê Partiya Demokrat a Kurdistanê ku wek baskê Ebdula Hesenzade tê naskirin, xebata xwe dom dikê. Endamên partiyê ji bo ku nerazîbûna xwe li hember wê perçebûnê bidin xuyakirin, ji wê partiyê derketin, yek ji wan kesên navdar, Elî Mêhrperwer, endamê Polîtburoya wê partiyê bû. Lê perçebûna herî dawî di nav PDKÎ de bû sedema nerazîbûnên herî zêde û berfireh.

Çar sal piştî wê parçebûnê, endamên herdu aliyan daxwaz ji Sekreterê Giştî yê PDKÎ Mistefa Hicrî û Sekreterê PDK Xalid Ezîzî dikin, da ku ji bo yekgirtina partiyê dest bi hewldanê bikin. Cara yekemîn e jî ku endam û alîgirên wê partiyê li dêlva serkirdayetiya xwe bi kampanyayekê daxwaza yekgirtina refên partiyê dike. Herçiqas serkirdeyên herdu aliyên Partiya Demokrat dibêjin ku ew ne dijminê hev in, lê herdu alî hevdu wek sebebê hevnegirtina partiyê tometbar dikin.

Sekreterê Giştî yê berê yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, ku niha ser bi aliyê din (ango PDK) e, lidarxistina wê kampanyayê ji bo yekxistina partiyê wek hewldaneneke erênî dihesibîne û wiha axifî: "Me di Kongre û civînan de ragihandiye, bê ti şert û mercan em amade ne li gel hemû aliyan gotûbêjan bikin, bi taybet jî li gel hevalên berê yên me. Hevdem em napejirînin jî ku ti aliyek merc û pêşmercan ji me re deyne." Hesenzade axaftina xwe wiha qedand: "Em du partiyên cuda ne, lewra xwezayî ye ku siyaset û helwestên cuda bin, lê siyaseta me di derbarê nêzîkbûn û yekgirtinê helwêsteke ron û eşkere ye."

# Partiya Yekgirtû cigare qedexe kirin

"Tiştê pîs heram e, cigare jî pîs û zerermend e û gellek belge jî li ser herambûna cigareyan hene."




Soran Behaedîn Hewlêr

Li gor biryareke Yekgirtûya Îslamî ya Kurdistanê, mafê ti endamê Yekgirtû tune cigareyan bikşîne. Yekgirtû herwiha çigarekêşan qebûl nake.

Li gor ankêta Komeleya Neheştina Cigarekişandinê li Kurdistanê, ji sedî 35-40'ê mêrên Kurdistanê cigarekêş in. Endamê Serkirdayetiya Yekgirtû, Ferhad Mele Salih dibêje 10 salan berî ku Parlamena Kurdistanê kişandina cigareyan li cihên giştî qedexe bike, Yekgirtû cigarekişandin qedexe kiriye. Herwiha dibêje hemû endamên wan dev ji kişandina cigareyan berdan. Roja 14'ê Mijdar a 2008'an, Parlamena Kurdistanê yasaya neheştina cigarekişandinê derxist. Li gor wê yasayê nabe reklam ji cigareyan re bê kirin, divê li ser pakêtan bi kurdî agahdariya tendirustî bê nivîsandin û ger kesek li cihên giştî cigare bikşîne, ew bi bihayê 10 hezar dînaran bê texrîmkirin.

Pêwîst bû yasaya navhatî di 31'ê Gulan a 2008'an, di Roja Cîhanî ya Neheştina Cigarekişandinê, de bihata cîbicîkirin, lê heta niha hatiye paşguhxistin û di hundirê parlamenê bi xwe de jî ev yasa nayê peyrewkirin. Di rûniştineke parlamenê de endamê gera borî ya parlamenê Xefûr Mexmûrî ji serokê parlamenê re got "hinek parlamenter di hundirê odeyên parlamenê de cigareyan vedixwin."

Serokê Komeleya Neheştina Cigarekişandinê li Kurdistanê û pisporê tendirustiya giştî, Dr. Feysel Ereb got ku zêdeyî hezar madeyên kîmyawî di cigareyan de hene, ew jehirê tevî xwîna mirovan dikin: "Tesîrê li amûrê henaseyê, demarên xwînê, hestî, mêjî dikin û mirovan bi kanserê û gellek êşan dixin."

Şiwan Kerîm (25) ku endamê Yekgirtû ya Îslamî ya Kurdistanê ye, dibêje ku wî endamekî cigarekêş ê Yekgirtû nedîtiye. Lê ti wextan jê re nehatiye gotin jî dev ji cigareyan berde: "Di civînan de şîretê li me dikin em xwe ji cigareyan biparêzin."

Heta niha zanayên Îslamê li ser herambûna cigareyan hemfikir nînin. Pisporê şerîyetê Karwan Teha dibêje, "Tiştê pîs heram e, cigare jî pîs û zerermend e û gellek belge jî li ser herambûna cigareyan hene."

Li gor endamekî Yekgirtû, belkî partiya wan cigarekêşan qebûl bike. Lê Ferhad Mele Salih red dike û dibêje: "Niha jî Yekgirtû endamên cigarekêş wernagire." Berevajî Yekgirtû, Komeleya Îslamî cigarekêşan qebûl dike. Endamê Polîtburoya Komeleya Îslamî ya Kurdistanê, Evdilsetar Mecîd dibêje ku endamên komeleyê yên cigarekêş hene. Lê "Di hundirê beregehên me de ti kes nikare cigareyan vexwe."

## Encamên destpêkê yên hilbijartinan û nexşeya siyasî ya Kurdistanê

**Rêbiwar Kerîm Welî**



Herçiqasî hê bi tevahî encamên dawî yên hilbijartinên 7'ê Adarê nehatine ragihandin jî, lê hilbijartinên vê carê ji sala 1992'ê ve bigre, cara yekem bû rêje û giraniya partî û kesayetiyên siyasî yên Kurdistanê nîşan didin. Li vir em dikarin bi kurtî raveyekê ji hêzên serkeftî li ser meydana siyasî ya Kurdistanê bikin û bizanibin ku ji 25'ê Tîrmeh a 2009'an û heta 7'ê Adara 2010'an de çi qewimiye.

Tevgera Goran: Pêşbîniyên Goran xelet derketin. Ne ku bi tenê wê tevgerê nikarîbû li parêzgeha Silêmaniyê zora PDK û YNK'ê bîne, lê YNK'ê karî pirraniya navçeyên ku di hilbijartinên Tîrmeh a borî de ji dest dabûn dîsa ji Goran bistîne. Wekî din jî Tevgera Goran nikarîbû bibe tevgerek seranserî, bi awayekî ku bikaribe hêza ku li Silêmaniyê bidest xistiye bigihîne navçeyên din ên Kurdistanê. Stratejiya karkirina Goran bo berendamên wan li navçeya Hewlêr û Behdînan şaş bû.

YNK: Herçiqasî YNK'ê wek hêza dûyem ji hilbijartinan derkeve jî, lê tena tiştê dilê wê xweş dike ew e ku ew li Silêmaniyê li paş PDK'ê neket û li Kerkûkê jî biserket. Li gor hilbijartinên 25'ê Tîrmah a borî, YNK baştir bû. Lê stratejiya wê ya xelet di derbarê destnîşankirina berendaman li seranserê Kurdistanê bû sedema ku nikaribe li gellek deveran dengên bo kursiyekî pêwist bidestve bîne. Baskê Kosret Resûl li Hewlêrê şikestineke mezin anî û Talabanî jî îspat kir ku hê dikare YNK'ê kontrol bike.

Yekgirtu: Derbasbûna Yekgirtû ji dudiliya ku berî 25'ê Tîrmehê ketibû nav de û dûrketina wê ji hevpeymaniya "ne pîroz" digel partiyeke Îslamî û duyên sekûler, hişt ku Yekgirtû bibe yek ji sûprîzên van hilbijartinan. 34 salên xebata YNK'ê li Kurdistanê nekarî encamên baş li navçeya Behdînan bidest xîne. Lê Yekgirtû karîbû kursiyekî ji PDK'ê bistîne û tê çaverêkirin kursiyeke din jî bidestve bîne. Di heman demê de li Kerkûk û tevahiya navçeyên din dengên Yekgirtû, li gor hilbijartinên Tîrmehê, zêde bûne.

Komel: Elî Bapîr endamtiya Parlamena Bexda ji xwe re misoger kir, lê Komeleya Îslamî ber bi parçebûnê ve bir.

PDK: Min berê jî nivîsandibû ku PDK'e wê bibe sûprîza yekem a van hilbijartinan û bû jî û karî li seranserê Kurdistanê dengan bîne. Stratejiya PDK'ê nemaze jî propaganda Mesrûr Barzanî li Hewlêrê û derxistina pêş a 3 berendaman hişt ku dengên PDK'ê weke dengên hizbên din belav nebin.

Tê dîtin ku PDK'ê bi tenê karîbû nîvê kursiyên Herêma Kurdistanê bibe û em dikarin bibêjin PDK'ê ji niha ve hêza bê hevrik li ser qada siyasî ya Kurdistanê ye. Rêjeya dengên Îslama siyasî li Herêma Kurdistanê û Îraqê careke din nikarîbû ji sedî 10 derbas bike. Bêtiriya dengan çûn bo hizbên sekûler û neteweyî.

Ayla Akat Ata piştî hevdîtina bi Wezîrê Dadê re:

# "Bi kurtî efûya giştî tune"

### Ji bilî pirsgirêka zarokên girtî, efûyek giştî jî di rojeva Tirkiyeyê de ye



**Wekîla Serokê Koma BDP'ê Ayla Akad Ata li gel Wezîrê Dadê yê Tirkiyeyê Sadullah Ergin** (Wêne: Diha)

Wezîrê Dadê Sadullah Ergîn têkildarî pirsgirêka zarokên mexdûrên TMK'ê bi serokên komên partiyên siyasî re hevdîtin çêkirin. Ergîn di ziyareta Koma BDP'ê de bi Wekîla Seroka Koma BDP'ê Ayla Akat Ata're civiya. Li ser mijarê Akat daxuyaniyek da Rûdawê.

Nûnera Seroka Koma BDP'ê, Ayla Akat Ata diyar kir ku ew bi hêvî ne ku bo lihevhatinekê bikarin di komîteyekê giştî de pirsgirêkê nîqaş bikin. Ata got: "Li Tirkiyê ji bo mexdûrên TMK'ê tevgerek wîjdanî dest pê kiriye. Gellek sazî li ser bûyerê nîqaş û peşnîyazan dikin. Ew gellek girîng e, em hêvîdarin ku pêşnûma biçe Lîjneya Giştî û têkeve rojevê."

Ata diyar kir ku hevdîtina bi Wezîrê Dadê re di atmosferek baş de derbas bûye û got; "Derbarê TMK'ê de me rexne, pêşniyar û fikarên xwe gotin. Em girîngiyê didin mijarê. Pirsgirêkek girîng e û divê bê çareserkirin."

Li ser rewşa zarokên mexdûrên TMK'ê, Ata anî ziman ku di destê wan de îstatîstîk tune ne, lê nêzî 5 hezar zarok di gîrtigehan de ne, an jî darizandina wan berdewam e û got: "Bi vî rengî pêşnûma ji bersiva civakê dûre û nikare bersivê bide xwestekê gel. Nerîna saziyên nefermî gerek werin standin."

Derbarê lêborîna giştî Ata diyar kir ku partiya muxalefet pêşnûma ku mirov ji nû de werin darizandin rast nabîne, li hember disekine. Ata got: "Partiyên muxalefetê li hemberî dubare darizandinê ne. Sedema vê jî Abdullah Öcalan e. Xema wan ew e."

Ata di berdewamiya axaftina xwe de anî ziaman ku "Di rojeva partiya deshilatdar de roja îro mijara lêborîna giştî tune. Cîgirê Partiya muxalefetê CHP, Kemal Kilicdaroğlu, li Batmanê diyar kir ku ew piştgirî didin lêborîna giştî. Lê Serokê Partiya wan li hember derket. Bi kurtî lêborîna giştî tune."

Tevgera Goran û Partiya Yekgirtû:

# Em Serokkomariyê naxwazin!

**Elî Heme Salih** Hewlêr

Berevajî nerînên Hevpeymaniya Kurdistanî, Goran û Yekgirtû ya Îslamî naxwazin kurd postê serokkomariyê wergirin, lê dixwa- zin ku kurd bo postê serokwezîriyê anjî serokê parlamenê bikevin nav hewldanan.

Endamê Polîtburoya YNK'ê û Serokê Lîsteya Hevpeymaniya Kurdistanî li Parlamena Îraqê, Dr. Fuad Masûm bo Rûdawê ragihand: "Egerê wêya pir bihêz e ku Mam Celal careke din bibe serokkomar. Pirraniya hêzên niştîmanî yên Îraqê piştevaniya wê yekê dikin." Li gor Dr. Fuad "Mam Celal di vê postê de dikare xizmeteke zêde bide Îraq û kurdan."

Celal Talabanî dikarî di dema serokkomariyê de çend yasayên li dijî berjewendiyên kurdan veto bike. Lê niha egerên nehiştina desthilata postê Serokkomariyê pir bihêz e. Lîsteya Hevpeymaniya Dewleta Yasa bi serokatiya Nûrî Malikî jî, ku di hilbijartinên 7'ê vê mehe bû lîsta yekem, dibêje şertê wan bo çêkirina hevpeymaniyê ew e ku desteya serokatiya komarê û mafê veto jî nemîne.

Serokê Lîsteya Yekgirtû li Parlamenê Îraqê, Dr. Mihemed Ehmed bo Rûdawê diyar kir ku ji kurdan re serokatiya parlamenê girîngtir e: "Berê jî desthilata Serokkomar nebû, lê ji ber ku Mam Celal kesekî bihêz bû karîbû desthilatekê bide wê postê."

Berendamê Lîsteya Goran bo Parlamena Îraqê Şoriş Hacî diyar kir ku têbîniyên Tevgera Goran ne li ser kesê ku vê postê werdigre lê li ser postê serokkomariyê bi xwe hene. Çavkaniyekî nêzîkî serokatiya Tevgera Goran jî got: "Goran ne dijî Mam Celal e. Lê li gor me, du postên girîng li Îraqê hene: postê serokwezîran û serokê parlamenê, em piştevaniya kurdan dikin bo wergirtina postekî ji van."

Bi baweriya hêzên derveyî YNK û PDK'ê jî, ger Serokkomar nikaribe yasayan veto bike, wê ew post fêdeyeke girîng nede kurdan. Endamê Parlamena Îraqê Dr. Mehmûd Osman di vê derbarê de got: "Divê bê diyar kirin ku ger serokkomar kurd be, wê desthilatên wî hebin û wê bikare veto bikar bîne yan na?" Bi baweriya Dr. Mehmûd "Ger serokkomar bê desthilat be û nikaribe tiştekî li dijî kurdan red bike, fêda wî çiye?"



Mîna li vî gundî li gellek gundên navçeya Depê avahî herifîn û bi dehan mirov di jê xwe de hiştin

# "Sedema karesatê ne kerpîç e"

## Di erdheja li nêzîkî bajarê Elezîzê bêtirî 40 kesan jiyana xwe ji dest dan

**Amed (Rûdaw) -** Li navçeya Depê ya girêdayî Elezîzê roja 8'e Adarê serê sibê saet di 04.32'an de erdhejek bi hêza 6 pileyan pêk hat. Di erdhejê de, 42 kesan jiyana xwe ji dest dan û derdora 100 kesan jî birîndar bûn. Kesên ku jiyana xwe ji dest dan bi pirraniya ji gundên Oxciyan, Nasiran, Tekê, Pûşkûla, Kêlik û Seferan bûn.

Berpirsiyarê Odaya Endezyaran ya Elezîzê Hıdır Kaya dîtinên xwe diderbarê hejmara zêde ya miriyan anî ziman û got ku sedema mirinê ne tenê xaniyên kerpîç e, sedem ew e ku gel mehkûmî feqîriyê hatiye kirin: "Navçeya me li ser xeta erdhejê ye û metirsiya erdhejê dihat zanîn, lê pêrabûnên parastinê ne hatin standin. Li tevaya herêmê xanî kerpîç in, ji herî û ka hatine avakirin. Ez karim bêjin ku neçarî û bêderfetî bû sedema kuştina mirovan. Bêguman ne mimkun e ku rê li ber van felaketan bê girtin, lê mirov dikare hejmara windahiyan kêm bike. Ev jî peywira rêveberan e. Dewletê li hemberî gelê xwe erkên xwe bi cîh ne anîne."

Kaya diyar kir ku pêwîst e dewlet bo pêşîlêgirtina qurbaniyên zêde, qanûnên nû derxîne û xanî ji betonê werin ava kirin û çendîn pêşniyaz kirin.

**Pêşniyazên berpirsiyarê Odaya Endezyaran ya Elezîzê Hıdır Kaya:**

- Hemû civak li ser xetera erdhejê werin haydar kirin.
- Tevaya avahî di bin çavan re derbas bibin.
- Li hemberî erdhejê budçeyek were veqatandin.
- Civak li hemberî afat û xetera were perwerde kirin.
- Pêşiya avakirina avahiyê qaçax were girtin.
- Cihê ku di bin metirsiya erdhejê de ne, wek dibistan, nexweşxane û cihên ku mirov bi komî lê dixebitin, werin zexmkirin. Eger pêwist be avahî werin hilweşandin û nûjenkirin.



# Li Îranê pênaseya tawanên siyasî ne zelal e

**Sabir Qadirî**

Piştî 30 salên desthilatdariyê, parlamenterekî faris li Parlamena Îranê behsa zindaniyên "siyasî" li Îranê kir û daxwaza azadkirina çalakvanên siyasî yên ku ji ber aloziyên vê dawiyê yên Îranê hatibûn girtin, kir.

Hê di destûrê Îranê de pênaseyeke ron bo "tawana siyasî" nehatiye kirin. Ev jî bûye rêxweşker ku desthilat neyar û dijberên xwe desteser bike.

Parlamenterê bajarê Tehranê, Ehmed Tewekulî berê rexne li Mehmud Ehmedînijad girtibû. Nûnerê Bajarê Sîmnan jî li Parlamenê Îranê û Sekreterê Hizba Mirdim Salarî, Mistefa Kewakbyan daxwaza azadkirina çalakvanên siyasî yên ku piştî hilbijartinên gera dehan a serokkomariyê li Îranê hatibûn girtin, kiribû. Lê di yasaya bingehînî ya Îranê de û herwiha di yasa sezayan a Hikûmeta Îslamî ya Îranê de bi awayekî yasayî û ron pênaseya tawana siyasî nehatiye kirin. Loma gellek kurdên Rojhilatê Kurdistanê rûbirûyê zindankirin û darevkirinê bûne

Tawanên weke dijayetiya Xwedê, desthilat, ewlekariya neteweyî û herifandina nerînên giştî, li dijî çalakvanên dijber tên bikaranîn. Parêzer û mafzanê kurd ê Rojhilatê Kurdistanê, Şerîf Ezîmî amaje bi ne zelaliya tawanên ku rûbirûyê zindaniyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê tên kirin, da û got: "Pirraniya wan girtiyên siyasî ne, lê ji wan re tê gotin dijminên Xwedê, ewlekariya neteweyî û şoreşê."

Berdevkê Rêxistina Mafên Mirovên Kurdistanê, Îclal Qewamî ku jiber çalakiyên xwe hatibû girtin, got: "Jiber nebûna pênaseyekê bo tawana siyasî, di dema dadgehkirinê de derfet nayên dayîn ku tawanbar xwe biparêzin û parêzeran bigrin. Evca dadgehkirin bi nehênî birêve diçe. Li gor yasayên Îranê, divê tawanbarê siyasî bi amadebûna parêzer û desteya pêdaçûnê û li dadgeheke eşkere bê dadgehkirin. Lê ev yasa nayê bicîh anîn."

Berpirsê berê yê civata Parastina girtiyên siyasî li îranê, Ehmed Sadiq Pûr jî bo Rûdawê got: "Li gor agahiyên naven dên taybet bi parastina mafên mirov û navendên parastina girtiyên siyasî, zêdeyî 4 hezar girtiyên siyasî yên kurd li zîndanên Îranê hene."

# 7'ê Adarê bû raperîna duyem a gelê kurd

**Bayram Ayaz**



Berî hefteyekî hilbijartina Parlamentoya İraqa federal pêk hat. Ev hilbijartin sê şirîkên dewleta İraqê, yanî bo kurdan, erebên şîa û erebên sunî zêde girîng bû. Bi rêjeya dengan hêza şirîkan diyar dibe. Postên desthilatiyê û budceya dewletê li goreyê dengan tê dabeş kirin. Siyaset ev e. Bi çiqasî hêza te hebe, bi ewqasî dikarî xwedî desthilatê bî. Ev peywendiya rasterast di nabeyna hêz û desthilatê de li herderî derbas dibe. Li welat û dewletên ku li wan deran demokrasî qels e, biryardariya hêzê esas e.

Pêşiyên kurdan xweş gotine: zêr zane, zor zane, devê tifînga mor zane!

Em van gotinan li peywendiyên İraqê û Başûrê Kurdistanê dikarin wisa li hevdu bînin: petrol-gaz-avûrûbar zane, hêza nav gel zane, hêza pêşmerge/zêrevan û parastinê zane… Biryarder ev in.

Li Kurdistanê petrol-gaz-avûrûbar bi têra xwe heye, miletê kurd ji hêza pêşmerge-zêrevan û parastinê piştrast e. Vêca roja 7'ê Adarê xelkê Kurdistanê ji şirîkan re û ji hemî cihanê re diyar kir ku ew bi dengê xwe li pişta rêvebiriya xwe ya siyasî ye. Me dewlemendiya suriştî, xelkekî bawermend û berevaniyeka xurt heye. Ev wê bala cihanê zêdetir bikişîne ser kurdan. Ji ber vê yekê şirîkên me yên İraqî jî destpê kirin li deriyê me didin. Ew ji bo dabeşkirina desthilatê dixwazin bi kurdan re bibin hevpeyman. Dr. Elawî û Dr. Abdulmehdî hatin Kurdistanê, Malikî telefon kir, malbata Ebdilhekim ji xwe xwe dostê Barzaniyan û kurdan dizane. Bi encamên vê hilbijartinê destê kurdan xurt bû. Hêviyên dewletên dorber bi avê re çû. Nuha dor hatiye ser bazara desthilatê û di vê warî de maye ser şareziya siyasî ya kurdan.

Çend encamên siyasî girîng vê hilbijartinê jî em pêşkêş bikin.

- Kurdistanîtiya Kerkûkê careke din têkez bû. Eger referandûm çêbûya, Kerkûkiyan bi rêjeyeke bilind nêzîkî sedî şêst (60%) biryara xwe dabûn bigîhin ser Îdara Kurdistanê. Êdî kes nikare nasnameya Kerkûkê gengeşe bike.
- Deverên kurdan Xaneqîn û Zimar, Şengal, Şêxan, Mexmûr, qeza û nahiyên din yên ser bi wilayeta Mûsilê bi dengên xwe ji Baxdayê û Waliyê Mûsilê (lîsta Hedba) re peyameka zelal rêkirin: Ev der kurd in û wê Kurd jî bimînin. Şebek li kurdîtiya xwe xwedî derketin. Êzdiyan careka din gotin, em in kurdên resen.
- Kes êdî nikare li kurdan bi çavê şirîkê sêyemin binêre. Kurd bûn kilîtê dabeşkirina desthilatê.

Encamên hilbijartina par ya herêmî û ya 7'ê Adarê dide xuya kirin ku siyaseta kurd ji demê konsens-demokrasiyê (demokrasiya lihevkirî) derbasê demokrasiyeka plûral û partisîpal (beşdar) dibe. Ev ji bo pêşkevtina zanista demokrasiyeke gerdûnî pirr girîng e. Hêza PDK'ê ya di nav gel de veşartî, wekî volqanekî teqiya. Gelê kurd di sala 1991'an de bi keleşnîkofê raperîn kir, roja 7'ê Adarê jî bi dengê xwe! Bijî 7'ê Adarê raperîna duyemîn!

# Suryaniyên Ewrûpayê vedigerin Kurdistanê

## Di demeke ku gellek gund li Bakurê Kurdistanê vala mane, Suryaniyên ji Ewrûpayê li welatê xwe vedigerin

**Firat Kelehkî**

Berî 3-4 salan Almanya ji Suryaniyên Tirkiyê re gotibû herin welatên xwe ji ber demokrasî li Tirkiyê jî heye. Lê malbatên ku vegeriyane dibêjin ne ji ber fişara Almanya, berî wê jî dixwestin vegerin cihên bav û kalên xwe û ti givaştineke wiha nebûye. Ya balkêş jî ew e ku niha jî ji Bakurê Kurdistanê xelk ber bi metrepolan koç dikin lê Suryanî vedigerin.

Dema malbatên Suryanî warên xwe bicîh dihêştin, milkên xwe disipardin hinek malbatên Misilman ku ji hev bawer bûn. Niha teqrîben hemû gundên xwe yên weke Kefro, Xirbê Mişka, Sêderî, Badibê, Hibabê, Arboyê û Kefrê li Çiyayê Bagokê, derdora Midyadê ser bi Mêrdînê ava û nûjen kirine û pişûya xwe ya havînan jî li wir derbas dikin.



**Dîmenek ji gundê Suryaniyan "Kefro" li herema Midyadê li Bakurê Kurdistanê**

### 'Em bi xwe vedigerin gundên xwe'

Suryaniyan li Almanya komeleyek ji xwe re damezrandine bi navê 'Komeleya Vegera Bo Welat'. Serokê Komeleyê, Îlyas Aras bi kurdiyeke xweş bo Rûdawê got: ''Em bi xwe vedigerin gundên xwe û me gellek gundên xwe avakirine.''

Li ser pirsa gelo di çarçoveya 'Vebûna Demokratîk' de vedigerin yan sedemên din hene? Aras wiha bersiv da: ''Na ne di wê çarçoveyê de. Piştî sala 2003'an rewş baş bû û me dest bi avakirina gundên xwe kir. Em dikarin bêjin me hemû gundên xwe yên Rayîtê (li derdora Çiyayê Bagokê ser bi qeza Nisêbînê) ava kirine.''

Derbarê gelo dewletê garantiyek daye wan ku vedigerin, Serokê Beşa Antropolojî li Zanîngeha Dîcleyê Alk. Doç. Dr. Abdurrahîm Özmen ku teza xwe ya doktora li ser Suryaniyên Tirkiyê wergirtiye, dibêje dewletê ti garantiyek nedaye, lê dibêje vegerin. Berî bi 3-4 salan jî, Almanya daxwaz ji Suryaniyên Tirkiyê kir ku vegerin cihên xwe.''

Niha jî ku gundên xwe avakirine, lê kes lê najî. Tenê havînan tên pişûya xwe li cihên bav û kalên xwe derbas dikin. Derbarê gelo gencên wan ên ku li Ewrûpa ji dayik bûne wê razî bibin vegerin, Aras got: ''Niha ti xwestekeke wan tune. Lê hêviya me ew e dema em vegerin ew jî vegerin.''

### Avahiyên pir modern çêkirine

Li ser pirsa gelo ji ber givaştina Almanya vedigerin gundên xwe yan na, Antropolog Abdurrahim Özmen dibêje: ''Na, berî wan jî çend mal hatin Midyadê û gellek xaniyên xwe yên kevin restore kirine û xaniyên nû çêkirine. Gundê bi navê Kepro li ser rêya navbera Nisêbîn-Midyadê, nêzîka 35 xanî çêkirine her yeke sê-çar qat, bi melevangeh û awayekî modern. Komeleya gund hebû pere ji wan dan hev û gundê xwe avakirin. Yên bi tevahî hatine 20-30 mal in. Ewên din havînan tên û zivistanan diçin.''

Antropolog Özmen sedema vegera Suryaniyan wiha rave dike: ''Ev der welatê wan e. Piştî salên 1980'î ew nema karîbûn li vir bimînin, man bo wan nebaş bû. Bêguman xweşî û nexweşiyên Ewrûpa jî hene. Li wir dêrên wan cuda ne û naçin dêrên hev. Ew naçin dêrên Ewrûpiyan û tenê diçin dêrên xwe.''

Her li ser heman mijarê Muxtarê Gundê Xirbê Mişka (Dağiçi) Selîm Al, diyar dike ku berî vegera Suryaniyan, dewletê rêyên gundan çêkirine û av û elektrîk jê re çêkirine.

### 'Bi kurdî daxifin lê xwe kurd nabînin'

Li derdora Midyadê hinek gund hene bi kurdî daxifin. Özmen dibêje: ''Çend mal li Mêrdîn, Midyadê û herwiha gundek bi navê Hax li Midyadê heye, xwe ji wan Suryaniyên din cuda dibînin, lê xwe kurd jî nabînin. Wate xwedî li welatê xwe derdikevin û dixwazin vegerin.'' Serokê Beşa Antropolojî li Zanîngeha Dîcleyê Alk. Doç. Dr. Abdurrahîm Özmen, dibêje ''Mesele ne ew e ku bêjin em ê dewletekê çêkin. Ew cihê Suryanî be, jê re dibên Tur Abdîn. Navbera Nisêbîn, Hezex, Midyad û Mêrdînê. Berî nêzîka 1700-1800 salan li wan deran dêr çêkirine, niha jî dêrên wan li Çiyayên Bagokê hene.''

Özmen axaftina xwe wiha qedand: "Piştî zayînê salên 300-400'î wan ew dêrên pirr mezin çêkirine, yanî ewder cihê wan e.''

Dibe ku vegera Suryaniyan bi dilê hinek Misilman nebe, lê bêtiriya xelkê bi germî pêşwaziya wan dikin û dibêjin ji kevin ve bi hev re jiyane û niha jî dixwazin ew tevayî bi hev re jiyan baştir bidome.

---

Nûnerê Îraqê di bîranîna salvegera Helepçeyê de

# "Dive kurd ji Hikûmeta Îraqê netirsin"

**Reşad Özkan** Mûnih

Bi hevkariya komeleyên kurdan, roja 14'ê Adarê li bajarê Mûnîhê 22'mîn salvegera kîmyabarana Helepçeyê û operasyônên Enfalan hat bibîranîn. Di bîranînê de nêzîkî 150 kesan amade bûn.

Nûnerê Konsulxaneya Frankfurtê ya Îraqê, Elî Mûsa Hama ku di civînê de amade bûbû, ji Rûdawê re got "Îraq welatê kurd û eraban e, dive kurd ji Hikumeta Îraqê ya navendî netirsin û bizanin ku dema Saddam derbas bûye." Li ser pirsa "Almanya penaberên kurd bi zorê dişîne Kurdistan û Îraqê, ma gelo haya hikumeta we jê heye?" Mûsa Hama got "Em dersînorkirina hemwelatiyên Îraqî ji nêzîk ve dişopînîn û wêzîrê me yê derve Hişyar Zêbarî pirr caran Hikumeta Almanya prostesto kir û bo dersînorkirina hemwelatiyên Îraqî nerazîbûn nîşan daye. Lê Almanya li gora yasayên xwe tevdigere, pirr tesîra me li ser wan tune."

Mûsa Hama di civînê de li bin alaya Kurdîstanê de axifî û gazî Îraqiyan kir û got "Em îro di rêyek pirr dijwar de derbas dibin. Gerek em ji hevdu hez bikin û ji bo welatê xwe hevkariyê bikin." Paşî digel jenîna bilûrê, Saman û Sebrî Sindî helbestên xwe yên bi kurdî xwendin. Ji aliyekî din ve wêneyên Helepçeyê ku ji aliyê Rojînê ve hatibûn kişandin, dîwarên salona civînê xemilandibûn.

---

Pirsgirêka dengên betalkirî çareser nebûye

# Hewlêr wê biryarê li ser dengên derveyî welat bide

**Köln (Rûdaw) -** Hefteya borî li bêtiriya welatên Ewrûpayê dengên nerazîbûna kurdên rûniştvanên wan welatan li hember Komisyona Bilind a Hilbijartinan bilind bûn, piştî ku komisyonê rêjeyeke mezin a dengan redkirin û paşê diyar bû ku ew dengên kurdan bûn. Di wê derbarê de berpirsekî komisyonê ji Rûdawê re ragihand "Em çaverêya biryara bûroya serperiştîkirina hilbijartinên derve ya li Hewlêrê dikin ku ew biryara dawî bide."

Redkirina dengan bi vê şêweyê bû; li Swêd ji nêzîkî 37 hezar dengan, 6 hezar û 200 deng hatin redkirin. Li Hollanda jî ji 12 hezar dengan 5130 deng hatin redkirin û li Almanya ji 20.011 dengan 4418 deng hatine redkirin. Rêveberê Bûroya Hollanda ya Komisyonê, Wayil Mihemmed Ebid ji Rûdawê re diyar kir ku yasaya wan diyar kiribû ku her kesê ku belgenameyên fermî yên Îraqê yên weke "nasname yan regezname" pêre nebin, mafê wî yê dengdanê tune. Vê jî wiha kir ku ew kurdên ku tenê belgenameyên ewrûpî bi wan re hene, nekarin deng bidin. Lê çavdêrê Lîsteya Goran li bingeha bajarê Köln, Emîn Caf dibêje "Di serî de me zanî ku sedemên redkirina dengan ew bû ku belgenameyên dengderan nedirust û dûbarebûyî bûn. Lê piştî wê ji me re diyar bû ku bêtiriya dengan bi sedemên cuda û bêyî hebûna sedemeke yasayî pirsgirêk ji wan re hatine dirust kirin."

Ji aliyekî din ve lîsteyên kurdî yên ku beşdariya hilbijartinan kiribûn, bi rêya belavkirina daxuyaniyan nîgeraniya xwe li ser şêwazê karkirina komisyonê nîşan dan. Berpirsê Bûroya Hilbijartinên Partiya Demokrat a Kurdistanê, Cafer Emînkî di radyoya Zagros rexne li "xemsarî û sistiya" karê komisyonê girt û got: "Me daxwaz kiriye ku bi lez çareseriya ragihandina encamên were kirin." Û bi baweriya wî "paşdexistina ragihandina encaman, li gor standardên navnetewî, tiştekî ne dirust e." Lê Rêveberê Bûroya Hollanda ya Komisyonê Wayil Mihemmed Ebid wê rexneyê rast nabîne û dibêje "Ya ji me tê ew e ku em qunax bi qunax pêşencaman belav bikin."

# Zarokên kurd û tirk li diyaspora şerê siyasî dikin

Li ser bersiva zarokê kurd ku ew ji Kurdistanê ye: “Mamoste, ka Kurdistan? Ev zaroke kurd derewan dike!”

**Mistefa Çiwartayî** Almanya

Dema zarokê Çeto di Roj-Tv dibîne çawa polîsên tirk li jineke kurd dixin, sibehê dema diçe dibistanê du zarokên tirk dide ber pehînan. Çeto ku zilamekî Hewlêrî ye û li Almanya rûdine, behsa zarokê xwe dike bê çawa li zarokên tirk dide: “Erê raste kurê min ê mezin wan dide ber pehînan, heta niha li gellek tirkan xistiye, tirk pirr jê ditirsin.”

Dîlman Dîlan xwendekarê pola 5’ê ye, rojekê dixwaze ligel dayika xwe here bazarê, ew berî dayika diçe ber dergeh, dema li gel hevalê xwe diaxife ji nişka ve zarokekî tirk ji pişt ve wî pal dide “dehif dide” û li ser devê xwe dikeve xwarê, diranê wî yê pêşî dişikê. Bavê Dîlan dibêje: “Ez çûm mala zarok û min ji bavê wî re got kurê te wiha kiriye, wî got kurê min tiştê wiha nake, min jê re got bangî kurê xwe bike, dema kurê wî hat got ez bûm.” Bavê Dîlan xwestiye bi aştiyane pirsgirêkê çareser bike û nekeve gilîkariyê, lê kes û karên zarokê tirk baş reftar nekirine û jimara sîgortaya xwe nedane bo çêkirina diranê Dîlman ku 2500 Euro li ser diçin. Bavê Dîlman dibêje: “Me gilî kir û pirsgirêk gihand polîs û dadgehê.”



**Diranê Dîlman Dîlan ji aliye lawikekî tirk hatin şkandin** (Wêne: Rûdaw)

Şer û lihevnekirina zarokên tirk û kurd, bi înkarkirina tirkan a navê kurdan ve girêdaye, lê mamoste û aliyên desthilatdar pirr caran çavên xwe ji vê meseyelê miç dikin. Kanî Elî ku xwendekarekî seretayî ye, pirr pirsgirêk di navbera wî û zarokên tirk de derdikevin. Kanî dibêje kurd im û ew jî şerê wî dikin: “Hê di baxçeyê zarokan de bûm û temenê min 4 sal bûn, min ji Merwe ya hevala xwe re got ez kurd im, wê got kurd nînin.” Ji ber ku Kanî kurd e, ew li gel Merwe ya tirk, rastî pirsgirêkan dibe.

Paşxaneya siyasî ya bav û dayikên kurd û tirk bi tevahî bandorê li ser zarokên wan dike û pirsgirêkên mezin dirust dike, berî çend mehan di ahengeke hiphop a gencên alman, kurd û tirk de li bajarê Olpe, ji ber wê yekê ku gencekî kurd ala Kurdistanê danîbû ser milê xwe, di salona ahengê de rastî êrişan hat û piştî xilasbûna ahengê jî li dervey holê careke din gencên tirk bi kêran êrîş birin ser xortê kurd û ew kuştin.

Ji ber ku tirk wek revendeke xwedî dewletek in ku li pişta wan e û bi berdewamî hevkariya wan a maddî û manewî dike, yekgirtî, bihêztir û diyartir in. Dema zarokekî kurd li ser pirsa mamosteyekî ku dipirse ‘tu ji ku yî?’ bersiva mamosteyê xwe dide û dibêje ku ew ji Kurdistanê ye, roja din zarokekî tirk nexşeyekê li gel xwe tîne û nîşana mamoste dide û dibêje “mamoste ka Kurdistan? Ew zarokê kurd derewan dike!” Bê guman zarok li malê behs kiriye û dayik û bavên wî bilez nexşeyek dane destê wî.

Heta pirsgirêka Bakûrê Kurdistanê li gel Tirkiyê neyê çareserkirin û Dewleta Tirk guherînan di destûrê xwe de çê neke, aştî bicih nabe, pirsgirêka zarokên kurd û tirk wê li diyasporayê jî berdewam be û hevaltî û ji hevdû fam kirin jî wê hertim rastî pirsgirêkan bê.

# Mîdya çavê xwe berdaye kursiyekî Parlamena Fînlandayê

Mîdya bi demençeyê hat birîndarkirin û di sala 1994’an de gihişt Fînlanda

**Sirwe Dilxoş** Fînland

Mîdya Zahir keçeke kurd e, li bajarê Mîsarî yê Fînlanda dijî. Sala 1984’an, li bajarê Kerkûkê ji dayîk bûye, heta niha çendîn postên hikûmî û rêxistinî wergirtine. Berpirsyariya herî dawî ya wê jî Endama Civata Parêzgeha Raseporî ye û di wê encumenê de Cîgira Seroka Lijna Perwerde û Xwendina Bilind e. Herwiha Cîgira Rêveber a Saziya Kultûrî û Mozexaneya heman parêzgehê ye. Di Rêxistina Jinên Swêdê de jî endam e, endama rêveber a Banka Tendurustiyê ye û herwiha endama du rêxistinên ‘UNICEF ICIF’ û ‘Svenska Kvinnoforbundet’ e.

### Bijîşkeke Fînlandî digihe hawara Mîdya

Di hevpeyvîneke digel Rûdawê, Mîdyayê diyar kir ku ew di sala 1991’an bi gulleya demançeyê birîndar bûye û li sala 1994’an bi rêya Dr. Cally Ogston digel malbata xwe gihaye Fînlanda û paşî dest bi xwendinê kir li Kolîja Kargêrî. Niha regeznameya Mîdyayê ya Fînlandî heye û ew ji aliyê partiyekê ve bo Parlamenê wî welatî hatiye berbijarkirin ku biryar e sala dahatû hilbijartin bê lidarxistin.

Mîdya diyar dike, “Eger ez di hilbijartina dahatû de serkeftim, ezê bo netewa kurd bixebitim.” Ew herwiha dibêje: “Min gellek tişt ji bo kêmendam, nexweş û zarokan şandine, herwiha bi armanca alîkarîkirina Herêma Kurdistanê di warê elekterîkê de, min ligel şîrketeke taybet a parastina jîngehê serdana Kurdistanê kiriye. Min kariye çend kursên xwendinê ji bo şagirdên kurd li zanîngeha Helsînkî dabîn bikim, herwiha min hevkariya çend penaberên kurd kiriye.”

Mîdya diyar dike, hikûmeta Fînlanda heta radeyeke baş agahdarê rewşa Kurdistanê ye û gelek tiştan di derbarê Kurdan de dizanin û wiha berdewamî da axavtina xwe: “Ew dizanin ku rewşa ewlekariya Herêma Kurdistanê baş e û ne wek deverên din ên Îraqê ye.”

### 6 hezar penaberên kurd li Fînlanda hene

Nêzîk 6 hezar penaberên kurd li Fînlanda dijîn, bêtiriya wan di dû salên borî de hatine wî welatî. Mîdya eşkere kir: “Hinek kurd li vir aktîv in û kar dikin ku netewa kurd bo cîhanê û xelkê Fînlanda bidin nasandin. Xelkê vir dizanin ku di welatên Tirkiye, Sûriye û Îranê de bê maf in. Lê rewşa kurdên Başûrê Kurdistanê baş e û hikûmet û Parlamenê xwe heye.” Mîdya da zanîn ku: “Wezîra Karûbarê Penaberan Estêrd Saors, daxwaz ji min kir ez ji bo xurtkirina peywendiyên navbera Hikûmeta Fînlanda û Herêma Kurdistanê kar bikim. Min jî ligel peywendî bi Serokê Buroya Peywendiyên Derve Felah Mistefa çêkir û navbirî jî daxwazî qebûl kir.”



**Mîdya Zahir** - (Wêne: Rûdaw)

Mîdya behsa penaxwaz û penaberên kurd ên li Fînlanda dike û diyardike ku hikûmetê dana mafê penaberiyê dijwar kiriye û gelek penaxwaz bi nexweşiyên pîskolok ketine. “Par Wezareta Karûbarê Penaberan şandek şand Herêma Kurdistanê û li ser şandina wan penaberên ku mafê penaberiya wan tuneye, li hev kirin.”



Aşna İsmail Dr. Tavge Zeyneb Qadir

# Jinên kurd li Ewrûpayê 8'ê Adarê bi tênê pîroz kirin

"Gellek jinên kurd hê li jêr gef, tirs û tundûtûjiyan dijîn."

**Mistefa Çiwartayî** Almanya

Di demekê de ku tundûtûjiya dijî jinên kurd didome, jinên kurd li welatên Ewrûpa ji xeynî çend konsertên biçûk û nameyên pîroziyê, tiştekî din li roja 8ê Adarê, nekirine.

Ew roj piştî hewldan û xebateke bê rawestan, di sala 1977'an de weke "Roja Cîhanî ya Mafên Jinan û Aştiyê" hat destnîşan kirin.

Tevî ku jinên kurd di gellek warên civakî de gihiştine gellek post û rutbeyên civakî, çandî û siyasî jî. Lê bi giştî ew hêjî li jêr tundûtûjiya mêran e. Hê li jêr navê parastina namûsê tên kuştin û piraniya wan li jêr gvaştinên derûnî û tundûtûjiyê, neçar dibin xwe bişewitînin.

Li 8'ê Adara îsal li Almanya jinên kurd ji bilî nameyên pîrozbahiyê ti bername amade nekiribûn bo nehêştina tundûtûjiya dijî jinan.

Zeyneb Qadir rûniştvana bajarê Bremen ku 8'ê Adarê ligel mirov û hevalên xwe beşdarî ahengeke biçûk a taybet bi vê rojê bûbû got: "Îro rojeke pirr xweş e, rojeke pîroz e, buhar e, bîranîna serhildanê ye, hilbijartin û Newroz e." Li gor Zeynebê, jinên kurd hemû mafên xwe bi destnexistin e: "Lê ger kurd weke netewe azad bibin û bigihin mafên xwe, wê jinên kurd jî azad bibin."

Dr. Tavge jî dibêje: "Jinên Kurdistanê heta raddekê mafên xwe misoger kirine." Ew herwiha dibêje: "Di hemû warên jiyanê de, jin hene; parlamenterên me yên jin hene, rêveberên giştî yên jin hene, wezîr hene û qayimeqam hene yanî jinên kurd di hemû waran de beşdar in."

Tavge şîreta jinan dike ku di dema derketina pirsgirêkên civakî de, hawara xwe negihînin xwekuştin û xwe şewitandinê: "Jin dikare bi hêminî pirsgirêkên xwe bi riya yasa û kes û karên xwe çareser bike, xwekuştin qet ne çareserî ye."

Herçiqasî pirr caran jinên kurd nemaze li hundirê Kurdistanê, behsa wê yekê dikin ku heta niha gellek mafên jinan tên binpêkirin, lê jinên kurd li derve bi awayekî din difkirin. Çalakvan Niyaz Seîd dibêje: "Jinên kurd gihane beşeke mafên xwe û xebata xwe didomînin heta hemû mafên xwe." Lê Kiwêstan Mistefa ku rûniştvana bajarê Bonn e li Almanya dibêje: "Gellek jinên kurd hê li jêr gef, tirs û tundûtûjiyan dijîn." Kiwêstan bi hatina vê bîranîna salane re, beşdariya ahengên 8'ê Adarê kiriye û dibêje: "Pirr kêfxweş im bi hatina vê bîranînê, pîrozbahiya jinên kurd dikim."

Berêz Hacî:

# "Ez bi xwe xweşik im operasyon ji bo çi?"

Li gor anketan dawî Berêz baştirîn bêjer e di televizyonên kurdî de



Berêz Hacî (Wêne: Rûdaw)

**Ebdilla Nihêlî** Duhok

Bêjera Kurdistan Tv, Berêz Hacî red dike ku wê operasyona xweşikbûnê encam dabe. Ew herwiha poşman e ku wê hevaltiya jinên medyakar jî kiriye.

Berêz Hacî li bajarê Silêmaniyê ji dayik bûye û niha li Hewlêrê dijî. Sala 1995'an dest bi karê ragihandinê kiriye û pêşî di fîlmekî û şanoyeke kurdî de lîstiye. Wê bêjera ku niha bûye rûyekî naskirî di nav ragihandinê de, di hevpeyvînekê de bo Rûdawê eşkere kir ku wê projeya bernameyekê amade kiriye ku pêşkêş bike.

Ji ber çûna derveyî welat, ev demeke Berêz Hacî kêm li ser ekranê derdikeve. Ew di sê ankêtên ku dema borî hatin kirin weke baştirîn bêjer hatibû destnîşankirin.

Hacî red kir ku bedewî û sipehîbûna wê sedemê serekî yê yekembûna wê be: "Ma qey ez bi tenê xweşik im? hemû bêjerên me bedew in." Navborî red jî dike ku bedewiya wê bi rêya operasyona xweşikkirinê hatibe bidestxistin: "Ti caran wî mafî nadim xwe ku desttêwerdana karûbarên Xwedê bikim, ew ji min re hêleke sor e."

Berî demekê Berêz di hevdîtineke rojnamevaniyê de derbarê jiyana xwe ya taybet nemaze li ser zewacê gotibû ne şert e ew kesê li gel dizewice dewlemend be. Derheqê dema şûkirinê jî got: "Xwedê dizane!" Lê Berêzê negot ka ew evîndar bûye yan na.

Berêz behsa taybetmendiyên xwe dike û dibêje ew hêris dibe dema mirovek derewan lê bike û ji pişt ve xencerê lê bide û dilxweş dibe dema di karekî de serkeftî dibe. Ji xwarinan jî kêfa wê ji dolme û xwarinên bilez û pakêtkirî tê. Ji stranbêjên Kevin hez dike, lê kêfa wê bi govendê nayê: "Dibe ku di temenê xwe de, min 10 caran govend kiribe."

Derbarê peywendiyên civakî Berêz dibêje: "Dayika min pişta min e, hevaleke min a medyakar heye û pirr nêzîkî min e û behsa gelek xemên xwe jê re dikim. Lê ez poşman im ku rojekê min hevaltiya keçên medyakar dikir."

# Di çapemeniyê de jin

Ajansa Çapemenî a Tirk (Medya Takip Merkezi) raporek di bin navê 'Di çapemeniye de jin' gihand raya giştî. Li gora rapore, jin bi nûçe yê 'zordarî û eciz' tê nasandin.

**Stenbol (Rûdaw) -** Ajansa çapemeni a Tirk sala 2009'da, di navbera hazar û 600 kovar û rojnama de lêgerîn û lekolînek kiriyê. Rojane nûçe li ser jina peyçûn û analîz kirinê. Encama raporê di bin nave 'Di Çapemeniye de Jin' gihandine raya giştî.Li gora raporê, di çapemeniye de jin bi nûçeye 'zordarî û eciz' te nasandin. Nûçeye ku di kovar û rojnama de tenê weşandin sedî 40 zordarî, eciz, dest avêtin, kujar. Nûçe ye li ser jina bi giranî di rupelê seyêmin de cîh dikrin.

Raporê bal kişandiyê, jina li gora sale berê di kar û reveberiye de serkevtin a xwe zedekir yê. Di çapemeniye sedî 22 kar û serkevtine jina hatiye weşandin. Le bele dî siyasete dê rengê jina gelek hindik hatiye dîtîn, sedî 11 jin di siyasete de xwedî îrade û dengin. Li gora raporê, li ser perwerdê û fêrkirin, jiyana civakî û abori agahi hatine belavkirin. Nûçeye ku piştgiri ya mafê jina digrin sedî 10. Di çapemeniye de renge jina dî çand, huner û spor ê de gelek kem hatiyê ditin. Rapor dest nişan di de, nûçeye liser jina sedî 39 'neyînî', sedî 37 'erênî' ye.

Di rojnama de nûçeye liser jina sedî 16 di rupele yekem de hatiye weşandin. Le bele ev nuçe ku di rupele yekem de hatine weşandin sedî 39 nûçe ye 'zordarî û eciz', sedî 23 li ser jiyana kar û sedî 13 li ser siyasete ne.



Derhêner Ganî Ruzgar Şavata:

# Filmên min li ser pirsgirêkên herêmê ne

Derhênere kurd heta niha bi dehan berhem afirandine. Fîlmên wî yên di derbarê pirsa kurdî di TV'yên tirkî jî tên weşandin.




**Rûdaw: Hûn dikarin xwe bidin nasandin?**
Ganî Ruzgar Şavata: Sala 1960'ê li Meletyê ji dayik bûme. Jiyana min bi şano û sînemayê derbas bû. Piştî Yılmaz Güney ez im ku bi heman ziman û çandê fîlman diafirînim. Li Tirkiyê yekem car min çanda Elewî û kurdan gihand medya netewî û herwiha qetlîma Helebceyê jî min yekem car anî ser dika şanoyê. Ez hatim darizandin lê min serî netewand.

**Heta niha we çend fîlm çêkirine?**
Min 24 fîlm çêkirine, di 18'an de ez derhêner bûm û senarîstê 21'an bûm. Herwiha senarîstê fîlmekî mamosta Yilmaz Güney bûm. Ji wan 12 fîlmên televizyonê bûn û 12 fîlm ên sînemayê; herwiha 3 jî rêzefîlm bûn.

**Babet û naverokên fîlmên we bi pirranî li ser çi ne?**
Li ser pirsgirêkên herêmê [Bakurê Kurdistanê, Red.] pirsên Tirkiyê yên giştî û jiyan û çanda gelên Tirkiyê. Min bi pirranî baweriyên olî û mafên jinan hildane nav fîlmên xwe.

**Derbarê fîlmên xwe de hûn dikarin bi giştî me hinekî agahdar bikin?**
Fîlmên min bûn awêna gel, di fîlmên xwe de bi pirranî ez lîstikvanan hildibijêrim. Min di fîlmên xwe de gel daye lîstin. Min fîlmên xwe bi bawerî, ked û hêza gel çêkirin. Min ti caran ji bo pere fîlm çênekiriye. Ger min ji fîlmek pere bi dest bixista, min pê fîlmek din çêdikir.

**Fîlmê bi navê Azad, Vîn Tv dublaj kiriye û tê temaşe kirin. Tu dikarî hinekî li ser biaxifî?**
Fîlm li ser Kurdistana Tirkiyê ye û li ser pergala zextkar a Tirkiyê ye. Ji xeynî 2-3 kesan lîstikvanên wî fîlmî hemû kurd in, Azad jî (qehremanê fîlm) lehengê gel e ku li himber pergala 'qorîcîtî'yê, axatiyê, koçberiya bi darê zorê û bendavên li herêmên kurdan tê çêkirin serî hildide. Ew fîlma ku li televîzyona Erdo□an, Kanal 7 hat weşandin, nêzîkî milyonek Dolar lê hatine xerckirin.

**Dahata wê çiqas bû?**
Ji dahatê fîlmê min tiştek wernegirt, armanca min bila bê sansûr bê weşandin; dahata rêzefîlmê Kanal 7'ê wergirt. Di rastiyê de rêzefîlma Azad ji 62 beşan pêk dihat. Pişt re kanala navborî hinek beşên fîlm sansûr kirin, ji ber ku ew naxwazin zêde mirov bi ser pergalê ve biçe, lê bikole û rexne bike. Ji ber wî fîlmî 3 caran sizayê "weşan-rawestandinê" ji televîzyona navborî re hat birîn. Lewra min jî fîlm da birîn û êdî çênekir.

**We rêzefîlmê Azad belaş da Vîn Tv?**
Belê, min belaş da Vîn Tv. Lê dûblaja wê ne bi dilê min e. Ez pirr ji wan aciz bûm. Mesela hesp kedî kirin çanda kurdan e, di dûblajê de ji dêlva ku ji hespê re bêje 'deh' dibêje 'here'. Min ji wan re got; ger hûn vê tiştê jî nizanibin, hûn ti tiştekî nizanin.

**Debara te ji çêkirina fîlman tê?**
Pereyên ku ez ji fîlman bi dest tînim, dîsan di çêkirina fîlman de xerc dikim. Ez dengbêjê sînemayê me. Li Meletiyê eraziyê min heye, ez li ser wê debara xwe dikim.

**Wek tê zanîn di filmê Dola Guran de kurd tên biçûk kirin, Mêmatî jî di fîlma Dola Guran de dileyîze û dema hat Hewlêrê xelkê baş pêşwaziya wî kir. Hûn dema hatin herêmê, gelo gel pêşwaziya we kir?**
Dema ez têm Herêma Kurdistanê, gel nahêle ez biçim hotêlan, min dibin li malên xwe dikin mêvan. Ez ji gelê me yê vir gellekî memnûn im. Cûdabûna min û Mêmatî ew e ku armanca wî tenê pere ye, lê armanca min doza Kurdistanê ye. Bi rastî ger derfetên ku li vir didin derhênerên din, bidin min jî, ez dixwazim li vir fîlman çê bikim.

**Rewşenbîr, şanoger û sînemavanên kurd her dem qala biratî û aştiyê dikin.**
Di nav me de kesên xwefiroş hene û hûn jî wan nas dikin, ew zirarê didin pêvajoya aştiyê. Tayyip Erdo□an ez jî vexwendim cîvîna di gel rewşenbîr û hunermendên kurd. Min ji wî û Bulent Arinç re got, kesên ku bi rastî rewşenbîr in, vebixwînin; ne kesên li pey reklaman.

**Hevpeyvîn: Firat Kelehkî**





Piştî du salan

# Keleha Hewlêrê dibe şûnwarekî cîhanî

**Arî Osman** Hewlêr

Di Adara 2004'ê de konferansa nûjenkirina Keleha Hewlêrê bi hevkariya Rêxistina RTI ya amerîkî hat sazkirin û paşî komîsyonek bo nûjenkirina wê hat pêkanîn. Niha jî UNESCO bo nûjenkirina wê keleha ku wek nişîngeha mirovatiyê ya herî kevnar - ku heta îro jiyan tê de berdewam e - tê jimartin, girêbestek ligel Parêzgeha Hewlêrê mohr kir.

Li gor girêbesta ku roja 9'ê Adar a 2010'an hat îmzekirin, 13 milyon Dolar bo nûjenkirina 60 xaniyên di hundirê keleha Hewlêrê û taxên wê de hatine veqetandin. Herwiha masterplaneke zanistî ji aliyê UNESCO ve hatiye danîn bo nûjenkirina keleha Hewlêrê.

Serokê Komîsyona Nûjenkirina Keleha Hewlêrê, Dara Yaqûbî berê bo Rûdawê daxuyandibû ku pêwîstiya nûjenkirina tecaya Keleha Hewlêrê bi 20 milyon Dolaranên amerîkî heye.

Lê li gor nûnerê UNESCO'yê li Îraqê Mihemed Celîd ev pere têrê nake: "Pereyên ku hatine terxankirin têra nûjenkirina tevahiya kelehê nakin, lê bernameyên din tên pêş." Ew herwiha dibêje: "Herî kêm du sal divên bo nasandina keleha Hewlêrê weke kevnewarekî cîhanî, ev yek jî wê bibe destkefteke mezin bo gelê kurd."

Celîd eşkere kir ku ew dixwazin karmendên şûnwaran li Kurdistanê hînî nûjenkirina şûnewaran bikin: "Da ku êdî pêwîstiya Kurdistanê bi UNESCO nemîne û ew bi xwe bikaribe kevnewarên xwe yên dîrokî nûjen bike."



Mamosteya zimanê kurdî:

# Medya dest avêt matematîkê jî



**Mamoste Medya li mala xwe dersên matematîkê dide şagirtên xwe** (Wêne: Rûdaw)

**Evdile Koçer** Amed

Çîroka mamosteya biçûk Medya ji min re hê jî wek xewneke absûrd xuya dike. Ji hêlekî ve kurdên 'welatparêz' ên ku bi sed bahaneyan ve ji kurdî direvin, ji hêla din ve keçikeke biçûk ku di odeya xwe de dersên kurdî dide hevalên xwe.

Ji milekî ve Bakûra ku bi destê xwe di nav pêlên asîmilasyonê de dixeniqe, ji milê din ve jî keçikeke ku tu dibêjî qey ji nav xewnan derketiye û dixwaze bi tena serê xwe li dijî asîmilasyonê bi pênûs û kaxiza xwe ve şer bike.

Lewma jî dogerên dewletê xwestin vê xewna mezin ya kurdan hêj ku li malên din belav nebûye bidarizînin; lewma rojnamegerên dinyayê her roj serî li wê dersxaneya wê ya kurdî didin; lewma televîzyonên ewrûpî xwestin vê lehengtiya Medyayê bikin belgefîlm û nîşanî civaka xwe bikin.

Di vê gera xwe ya dawî de min jî sedîsed dixwest Medyaya delal li Amedê bi çavê serê xwe bibînim. Di nav kolanên teng ên Sûra Amedê re em xwe digihînin ber mala Medyayê. Mamosteya biçûk bi heyecaneke mezin ve deriyê odeya xwe ya kurdî ji me re vedike.

## Li ser banan kevokên kurdî difirin

Li ser banên din jî kevok difirin; ez di dilê xwe de dibêjim qey ev kevok jî şagirtên wê yên kurdî ne. Serê pêşîn nivîseke keskûsorûzer ya bi kurdî ku li dîwar ve daliqandiye bala min dikişîne, "Paqijî jiyana me ye, paqijiya me hebûna me ye!".

Medya bi gotinên xwe yên biçûçok ve behsa gellek tiştên mezin dike, "Min nexwest ku bi hevalên xwe re bi tirkî biaxifim, loma min xwest ku ez wan jî fêrî kurdî bikim, da ku em bi hev re bi kurdî bilîzin..."

Ya rastî Medya çi bêje li xweşiya min diçe. Ne min got, ez xwe di cih de di nav xewnekê de dibînim. Dêbavê wê helbet bi keçika xwe ya biçûk gellek serbilind in. Nizanin wê bi kîjan gotinan vê kêfxweşiya xwe rave bikin, "Xwezî zarokên vî welatî hemû wekî Medyayê tevbigeriyan, jixwe wê hingê her tişt jî hal bûya..."

Hema bêje her roj name bo Medya tên. Ji gelek welatan name jê re hatine, lê pirraniya van nameyan jî girtîgehan tên. Bi îmzeya 'belengaz' kesekî/ê wêneyê Medyayê neqişandiye û jê re şandiye. Medya van name û wêneyên ku li dîwarên odeya xwe dadiheline yekoyek bi bişirîna xwe ya gulgulî ve nîşanî me dike. Diya Medyayê dibêje, kesên girtî bêtir girîngiya kurdî dizanin. Bavê wê behs dike ku ji xeynî hin îstisnayan kesên derve zêde girîngiya kurdî nizanin, "Loma ev mîrata asîmilasyonê li Amedê bûye behr!"

## Bi kurdî dersên matematîkê dide şagirtên xwe

Dû re hêdî hêdî wekî kevokan şagirtên Medyayê vedinişin odeya kurdî. Bi kurdî silavê didin hev, bi kurdî bi hev re dikenin û bi kurdî bi hev re dilîzin. Medya dest pê dike bi kurdî dersên matematîkê dide şagirtên xwe. Li ser textê "sêgoşe, çargoşe, pirgoşe, giroverik û hwd" dinivîse û nîşanî şagirtên xwe yên biçûk dike. Pênûsa destê wê bi kurdî 'matematîkê' dibêje...

Paşê helîl, benî û nanê benî yên gundan îkramî me dikin. Weke ku wê niha çîroka me biqede, em devê xwe şêrîn dikin. Em naxwazin xatir ji prensesa zimanê kurdî bixwazin.

Ma êdî ez ê çi ji Xwedê bixwazim. Ez dixwazim destê dayîkeke wisa maçî bikim ku Medyayek wisa gihandiye û daye civaka me. Lê nahêle. Ez xatir ji Medya û malbata wê dixwazim; pişta xwe didim oxirê û di dilê xwe de wisa dibêjim, "Bila hemû keçikên kurd bibin qurbana te Medyaya delal!"

# Xebatkarên "Van Times" bêpere dixebitin

"Berî ku rojname derkeve ez bi tirs bûm, dûvre ez serfiraz û bextewar bûm"

**Wan (Rûdaw) -** Beriya çend hefteyan rojnameya "Van Times" bi kurdî, tirkî, îngilîzî û farisî li bajarè Wanê dest bi weşana xwe kir. Berpirsyarê giştî yê rojnameya rojane Aziz Aykaç got ku Van Times bi elaqeyeke mezin hatiye peşvazîkirin.

Li ser sedemên ku çawa rojnameyek dikare bi çar zimanan weşanê bike, Aykaç got ku "Wan bajarekî kurdî ye, loma bi kurdî. Ciranê me yê sînor jî Îran e, pêwendiyên bazirganî hene, dîsa gellek koçber têne Wanê, ji bo wê jî bi farisî. Û tirkî jî zimanê me yê hevpar e. Îngilîzî jî ji ber ku zimanekî gerdûnî ye û ji bo civanan me bikar anî. Armanca me ew e ku di peşerojê de zimane ermenî jî tevlê bikin."

Li ser xebat û sedemên derxistina rojnameyeke bi vî rengî, Aykaç got "Wan bajareke li ser sînor e. Herdem bi kaçaxê, terorizm, nezanî û paşverûtiyê hatiye nasandin. Bêguman li Wanê û tevaya Kurdistanê gellek tiştê giring û pîroz jî têne jiyan kirin. Armanca min ew e ku ez wê bedewiyê bi mirovan re par ve bikim. Ez bawerim em bi ser ketin."

Aykaç li ser tirs û fikarên xwe yên beriya derketina rojnameyê anî ziman "Beri ku rojname were weşandin ez bi tirs bum, dûvre ez serfiraz û bextewar bûm. Ji ber ku "Van Times" elaqayeke pirr mezin dît. Îspat bu ku kurd ne nezan û terorîst in. Kurd mirovên dilsoz û aştîxwaz in. Ciwanê kurdan li Wanê çar ziman anin ba hev û îspat kirin ku çar gel dikarin bi hev re bijîn. Ev dewlemendî ye."

Rojnama ku rojane bi 12 rûpelan û reş û spî derdikeve, xwedî 15 xebatkar e û Aykaç diyar kir ku giştik jî xebatkarên ku bêyî pere dixebitin e.

## Bi hêviya hevdîtinê !

**Hussein Habasch**

Gotin, te çima wênedîwan li me vegerand, dema me ew xweliya agir de veşartî bû, te çima ew danî ser tehteşoya hevdemê û li pêşangeha heyîna me bi darxist; te rondikên avzêmê zayandin piştî ewqasî salên razanê! Te nehişyarî bi ser me de harkir, te nikarîbû hefsarê kovanên xwe peht bigirta û nehêşta bi ser me de lehyanî, lafawî biherike, dema berê pişta me di bin axînan de xwar bûye!

**Tosin can!**

Ka berî Newroza me bê, em kelên xwe birijînin: Em li parzemîn, welatan tev goristanên xwe belavbûne, em di demsalên cuda de dijîn, em nikarin li xweşî û nexweşiyên dêbav, xwîşkûbira, xizm û dostan beşdar bibin, bi wan re şabibin û bigirîn. Çima em ê weha bextreş bin!

Girso – bernav e – di Bihara 2009'an ji Rojavayê welêt hat, ji zû de bihîstibû ku li Bonnê zaroyên kurdan karin kurdî hîn bibin. Bi neviya xwe re hat, bi germî silav da, yekemîn car dît û bihîst çawa zaro bi kurdî dixwînin. Di nava xweşiyê de got, rehmetî xalê te E... Ez yekser mendehoş bûm û pirsîm, rehmetî?! Çima ma te ne bihîstiye? ... Ez ji hundir derketim û hêstirên min barîn.

**Tosin can!**

De ka Tosin can em vegerin Kurdistana xwe; ew kamêmaniya me bû di Cotmeh a 2009'an, gelê me balindeyên xwe yên koçbûyî di nav hemêza xwe de çend roja bextewar kirin. Weha li Duhoka şahiyê em lwîs bûn û di ber stranên Abidî re li baxçeya Yekîtiya Nîvîseran me dîlana xwe girt.

Kî ji me wê karibe wê şevbihurka li ba dengbêjên Duhokê ji bîr bike, eger em çiqas xemgîn bin jî!! Wê şevê belkî em kamêrantirîn kes bûn li Kurdistanê. Çawa li Sovyetê, li Moskow em li rêza petatekirînê diwestiyan û çavrêdikir, weha jî dengbêjên me çavrêdikirin, dilên guhdaran şad bikin, hinan jî çavrêya nefeskişînê nediman, fersend didîn, ji rast û çepê baştirîn awaz digotin. De bila mirin ji wê de here!!

**Tosin can!**

Em zanin jî rêya Cizîra pîroz bi têlên rêbirr asteng kiriye, weha ji me re jî ne hêsan bû bi şofêrê "Bozê Rewan" re; wî rêbirrî rêwîtiya me hinekî birîndar kir. Lê dema em li nav dilê Cizîra Botan peya bûn, me berê xwe da Peyamberê Nuh, me dîroka geşta efsaneyî jê bihîst. Li Medresa Sor jî, me guhdariya helbestvan, sofî, fîlosof û aşiqê mezin Melayê Cizîrî kir. Cizîr her aşiqistan e. Li ser gora aşiqên ebedîn, Mem û Zînê, me gurze helbest û tacegulîn bi navê kakê Peşêw jî danîn.

Ameda dîrokî, hevdemî û dahatûyê hemêza xwe ji kurên xwe re vekir. Bi afirandinên Qanatê Kurdo pirr şa bû û soz da ku wê tim bi kurdî bipeyive. Erê Tosin can, belkî em hemû careke din li tevahiya welatê xwe hevdû bibînin!



**Berpirsyarê giştî yê rojnameya rojane Aziz Aykaç**

Cîgirê Serokê Grûpa SPD'ê di Parlamenta Almanî de, Gernot Erler:

# Em ji Kurdistanê gellekî razî ne

## Erler derbarê pirsa Kerkûkê de: "Pêwistî bi çareserkirinek qanûnî û bêyî bikaranîna zordariyê heye"

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

**Hûn peywendiyên Almanya bi Îraqê re çawa dinirxînin?**
Peywendiyên me bi Îraqê re tim baş û xurt bûn. Bi Şerê Îraqê re di sala 2003'ê de hertişt têk çû. Lê yekser piştî şer Almanya hewil da ku di dûbare avakirina Îraqê de alîkar be. Ta îro me 350 milyon Euro ji bo alîkariya yekser dane Îraqê. Herweha em salane di navbera 4,5 û 5 milyon Euro alîkariya mirovane didin, bi taybetî ji bo alîkariya penaberan û alîkariya vegera wan. Û em ji bîr nekin ku Almanya dora 4,7 milyar Euro ji deynên xwe li Îraqê daxistin.

**Kurdistana Îraqê roleke giring di van peywendiyan de dilîzin. Çima gelo?**
Ku Hewlêr ji bo me ciyekî balkêş e, ji aliyekî ve bi rewşa ewlekarî ve girêdayî ye, ku ev demek e ji gelek deverên din baştir e. Ji aliyekî din ve, bi wan kesan ve girêdayî ye, ku li Almanyayê mane, kar kirine û vegeriyane welatê xwe û bi zimanê elmanî dizanin. Me di destpêka 2009'ê de li Hewlêrê konsulxaneyeke giştî vekir û em ta niha gellekî razî ne.

**Almanya ne tenê yekemîn welatê Ewrûpî be ku konsulxaneyeke giştî li Hewlêrê vekir. Ewê dest pê bike ku li Hewlêrê vîsa bide welatiyan. Çima ewqas bawerî di vê herêmê de?**
Ez kêfxweş im ku ji bo xelkên Kurdistanê niha derfet peyda dibe ku yekser vîsa li Hewlêrê bi dest bixin. Ev yek wê peywendiyên me xurtir bikin. Ev nayê wê wateyê ku baweriya me bi herêmên din tuneye. Teqez li Îraqê herêmine din hene ku ji bo vekirina konsulxane yan jî konsulxaneyên giştî balkêş in. Lê rastiyek heye ku pêşketinên li Kurdistanê hiştine ku baweriya me bi wê herêmê xurtir bibe.

**Gelo wê kînga peywendiyên aborî yên Almanyayê bi Îraqê re vegerin mîna berê?**
Ez bawer nakim ku ewqas zû çêbibe. Asta peywendiyan berî şer pirr bilind bû. Bi taybetî di warê bazirganiya petrolê de gelek tişt hatine guhertin. Ev beş di peywendiyên aborî yên elmanî-îraqî de roleke bir biçûk dilîzin. Ta ku rewş vegere mîna berê, dibe ku demek dirêj pêwîst be. Hilbijartinên Îraqê roleke giring di vî warî de dilîzin. Em hêvî dikin ku niha hikûmeteke xurt a pirrolî û pirrneteweyî bê hilbijartin. Çendîn rewşeke tekûz piştî hilbijartina hikûmetê pêk bê, ewqas amadebûna pêkanîna bazirganiyê ji aliyê bazirganên taybetî ve xurtir dibe.

**Hûn bawer dikin ku wê Îraq dîsa veger ser lingên xwe?**
Emê ji aliyê xwe ve hertiştî bikin ku em bikaribin bikin. Emê ne tenê şîretan bikin, lê emê bêtir xebata xwe di warê perwerdekirin û pêşxistina çalakiyên aborî berdewam bikin. Teqez emê li herêmê ji bo wê yekê bixebitin, ku ji derve ti hewildanên têkbirina rewşê neyên. Em dizanin ku berjewendiyên cîranên Îraqê, mîna Îran û Erebistana Sûdî, hene. Mixabin ev berjewendî xwedî aliyên cuda ne, ku bandora wan li ser siyaseta hundir a Îraqê jî heye. Lê piştî dîsabidestxistina serxwebûnê prosêseke zelal a xwenaskirineke xurt peyda bûye. Hebûna Amerîkiyan kêm dibe, ew niha kêmî sed hezar leşkerî ye. Her ku diçe, Îraq bêtir dikeve ser rêya destnîşankirin û peydakirina rêyeke xweser. Ev prosêsek e ku giringiyeke wê ya herêmî heye û Almanya piştgirtiya wê dike. Em piştgiriya pêşveçûna tekûz di vê dewletê de dikin.

**Hûn rola kurdan di Îraqa nû de çawa dibînin?**
Rola kurdan pirr berbiçav e, eger mirov dibîne ku serokê Îraqê Celal Talabanî kurd e û ku li Kurdistanê pêşketinine baş çêbûne. Kurd di avakirina Îraqa nûjen de roleke avaker dilîzin. Mirov tenê dikare hêvî bike ku ev yek berdewam bibe. Di vî warî de ti rexneyên me tunene.

**Di baweriya we de gerek kurd çi bikin da ku rola wan hîn xurtir bibe?**
Divê kurd bi xwe bizanibin bê ew dixwazin kîjan rolê bilîzin. Çendîn zelal be ku Îraq wek dewlet bimîne, ku ti xema ser sînorên xwe nexwe, û kurd doza serxwebûnê nakin, ewqasî bawerî bi Kurdistanê mezintir dibe, çimkî ev herêm bi xwe tekûz e. Çend xal hene divê zelal bin: Rola hikûmeta navendî çi ye? Çiqas gerek ew xurt be? Çiqas divê ew xurt be, da ku Îraq ji hev nekeve? Çi ne berjewendiyên rewa yên herêmeke federal? Divê kurd û hêzên siyasî yên îraqî, ku dixwazin hikûmete navendî ya xurt hebe, li ser van xalan li hev bikin û her yek hinekî ji ya xwe dakeve.

**Ji bo kurdan pirsa Kerkûkê pirseke bingehîn e. Ew di destûrê de çareseriya vê pirsê dibînin. Nerîna we çi ye?**
Ne hesan e ku mirov ji derve şîretan bide. Çawa be jî, pêwîstiya me bi çareseriyeke qanûnî heye, çareseriyeke ku bêyî pêkanîna zordariyê pêk bê. Ev giringtirîn peyam e ku ji welatên rojava wek Almanya tê.


Cîgirê serokê grûpa SPD'ê di parlamenta almanî de Gernot Erler (Wêne: Rûdaw)

**Gernot Erler** (1944) endamê Partiya Sosyaldemokrat a Elmanî (SPD) ye û ji sala 1987ê ve di parlamenta elmanî Bundestagê de ye. Erler ji 2005 ta 2009ê wezîrê dewletê bû di Wezareta Derve ya elmanî de. Piştî ku partiya wî di hilbijartinên 2009ê de têk çû, ew bû cîgirê serokê grûpa partiya xwe de parlamentê de û di vî warî de berpirsê beşê siyaseta derve, siyaseta tenmiye, mafên mirovan û parastinê ye. Gernot Erler yek ji wan kesên giring e ku siyaseta derve ya SPDê destnîşan dike.

## Hêdî-hêdî tirk dibin balyozên çanda kurdî

**Şevîn Dewlemend**

Kultura kurdî hêdî-hêdî li cem tirkan bêtir eleqe dibîne. Govenda kurdî 'mode' ye û kesên ku çend peyvên kurdî bizanibin 'zana' ne. Rast e jî, ji govendgirtinê yan ji bilêvkirina 'yek, du, sê, çar, pênc' xweştir çî heye? Baş e gelo ez digel evîniya xwe ji bo çanda me şaş im, yan kurd û tiştên kurdî di dema niha de eleqeyeke pirr mezin dibînin?

Divê em rastgo bin, pêvajoya demokratîzekirinê li Tirkiyeyê



hem tirk, hem jî Tirkiye pirr guherandiye. Rast e, belkî rayedarên wî welatî bi şev bêxew nîn in û bi awayekî dirust bîr li daxwaz û xwestekên kurdan nakin. Lê dîsa jî, dilê neteweperestên tirk ê herî mezin ji bo govenda heta sibê bi stranên kurdî lê dide. Ev tê wateya ku pêvajoya demokratîzekirinê kedeke xwe hebûye û kedeke piçûk jî nebûye.

Çend hefte berî ez li daweteke tirkî bûm. Vê carê ne li ba bûk, ne li cem zava di 4-5 neslên borî de kurdîtiyek dihate çespandin. Lê herçiqas li ba me êdî stranên standard bûbin jî, kilamên wek 'Agir ketiye dilê min', 'Zer mircan', 'Şemamê' û awazên folklorî yên din yên kurdî bûn kû dîlana wan xweş û geş dikirin.

Bêtirs û bi serbilindî ez dikarim bêjim ku ez govenda kurdî baş dizanim. Lê dema ku min jî xwe tevlî govendan kir û min dest bi sergovendê kir, min dît ku piştî demeke kin çend xortan xwe ji koma min cuda kirin û naseke min a berê ji dibistanê ku li cem herkesî wek tirka herî radîkal dihate naskirin, tevî zincîra xwe ya bi sembola sê-heyvan wek diyarbekiriyeke xas, ji min jî çêtir govendê digirt.

Mesele li vir naqede. Piştî ku ez çûm rûnim û bêhna xwe bistînim, min bi devê vekirî saetekî nêrî ku keçika Yozgatî çawa şano û hereketên me raxiste ber mêvanan. Hema bêje eynî weke me keçik xwe dibir û dianiya, çokên xwe nizim dikir û dîsa difiriya hewayê. Hem rîtmê dizaniya, hem jî hin gotinên stranan–nîvço jî bûbe- bi lêv dikir.

Ez mat mam. Çand û kultura ku ev sed sal in em nikarin bi kesî bidin qebûlkirin, tirk bi xwe pêşanî xelkê didin. Keçika ku di dibistanê de dijûnan li min dida ji ber ku min digot 'ez kurd im, zimanê min jî heye, welatê min bi navê Kurdistan jî', niha bibû balyoza kurd û çanda wan.

Li gel hemû rexneyên em li hikûmeta Tirkiyeyê digirin, divê em realîst bin û li tiştekî mikûr bên. Ew jî ew e ku deh sal berê van tiştên ku min qalkirî xeyalî bûn, lê îro li holê ne.

Pêvajoya rêlibervekirinê divê berdewam û ciddî be. Lê berdewam nebe jî ji niha ve tovên xwe çandiye û kulîlkên wê hêdî-hêdî derdikevin.

## Çapemeniya cîhanê

**DIE WELT**

Rojnameya almanî Die Welt vê heftê bal kişandiye ser windabûna bazara pirtûkan ku sedema vê yekê jî bipeşketina cihazên elektronîk ên nû weke kompîter, telefon û televîzyonên bihêz in. Herwiha pirsgirêkek din ya pirtûknivîsan meseleya copyright e. Die Welt bal dikşîne ser wê yekê ku di dema niha de pirtûkfiroşî jî statuya xwe winda dike. Banka êdî nema dixwazin krediyan bidin pirtûkfiroşên nû. Rojnameya almanî qala 'deja vûyekê' dike, ji ber ku nirxa pirtûkan îro bûye weke sedan sal berê û ji bo mayîna pirtûkê tekoşîneke nû divê. Li aliyê din Die Welt pirtûkên elektronîk hem wek alternatîf, hem wek gefa herî mezin li himber pirtûkên çapkirî, hem jî wek 'transformasyona' pirtûkên îroyîn bi nav dike.

**NRC HANDELSBLAD**

Hilweşîna kabîneya çarem a Balkenende di meha duyê de û hilbijartinên herêmî yên beriya du hefteyan ji bo hemû partiyên siyasî bûn sedemên hesabên nû. Piştî devjêberdana siyasetê ya seroka Partiya Sosyalîst (SP) Agnes Kant, Camiel Eurlings (CDA) ku ji aliyê çapemeniya hollandî ve ji bo pêşerojê wek serokwezîrekî baş dihat binavkirin, dest ji kar kişand. Di heman hefteyê de bi awayekî çaverênekirî serokê sosyal-demokratan (PvdA) Wouter jî ji ber jiyana xwe ya şexsî dev ji siyasetê berda. NRC Handelsblad çûyîna Bos wek derfeteke dibine ji bo çêbûna koalîsyoneke nû ya ku ji CDA û PvdA pêk were. Ev yek bi taybetî giring e ji ber ku ji rapirsiyan diyar e ku 4-5 partî di hilbijartinên pêşwext ên di Hezîranê de 20-30 kursiyan tînin. Li gor NRC, an divê Serokwezîr Balkenende jî dev ji siyasetê berde, an divê ew gotinên xwe yên neyînî li ser hevpeymaniyeke nû digel PvdA vekişîne.

**HAARETZ**

Rojnameya îsraîlî Haaretz Serokwezîr Netanyahû bi wê yekê tometbar dike ku ewlekariya welatê xwe dike qurbaniya bîrdoziyeke rastgir. Bicihkirina yahûdiyan li rojhilatê Qudsê, li deverên ku ereb lê pirr dijîn, mînaka herî baş e ji vê diyardeya ku dibe sedema "îzolebûneke navnetewî" bi navê îdeolojiyeke rastgir û ekstrêm. Rojnameya Haaretz rikbûna Serokwezir Benjamin Netanyahu bi taybetî wek sedema serekî ji bo têkçûyîna peyvendiyên digel Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê (DYA) bi lêv dike. Ji ber ku, weke Wezîra Derve ya DYA'yê Hillary Clinton jî destnîşan kir, yan divê Îsraîl dev ji firehkirina deverên cihûyî berde, yan jî hevaltiya bi Washington re ne mimkun e.

### Parlementer Ewrûpayê Bart Staes serdegirtina ROJ TV wek durûtî bi nav kir:

# "Belçîka balansa xwe winda kiriye"

## Di daxuyaniyeke bo Rûdawê parlamenterê belçîkî rexneyên tund li welatê xwe kirin

**Sîdar Bengîn Epozdemir**
Brûksel

Bart Staes, siyasetmedarê belçîkî yê Parlamentoya Ewrûpayê (PE) yê ser bi Fraksiyona Keskan ji xwe pirsî: "Gelo di bin navê 'têkoşîna li dijî terorê' de her tişt helal e?" Staes li ser helwêsta dewleta belçîkî ya di derbarê operasyonên li dijî saziyên kurdan de guman dibarîne û dibêje ku Belçîka balansa di navbera têkoşîna li dijî terorîzmê û parastina mafên mirovan û gelan de winda kiriye.

Staes bi nivîseke bo rojnameya De Morgen de ji şermezarkirinê bêtir, bi argumanan nîşan da bê çima divê herkes rexnegir be di warê operasyonên belçîkiyan li dijî saziyên kurdan. Digel ku Staes di daxuyaniyên xwe de dibêje ew rêz li pêvajoya dadresiyê digire, dîsa jî ew bangî herkesî dike ku bi çavekî rexnegirî li girtina çalakvanên kurd û serdegirtinên saziyan binêre. Bi baweriya Staes, cara yekemîn nîne ku "Dewleta Belçîka bi zêdegavî ketiye pey sepandina netewepserestiya dewletî ya tirkî. Rastî ew e ku ev 15 sal in ku Belçîka bi Tirkiye re dixebite. Doza Fehriye Erdal û DHKP-C'ê mînak in."

### Du standard, piştî 11 Îlonê

Li gor Staes diyardeyeke nû nîne ku ji bûyerên 11'ê Îlonê ve cot-standardek heye ku ji aliyê dewletan ve tê bikaranîn gava ku mijar dibe mafên mirovan: "Ji aliyekî ve welatên ewrûpî bi dengê bilind dibêjin Tirkiye hazir nîne ji bo endametiya Yekîtiya Ewrûpayê. Lê ji aliyê din ve ji bo polîs û hêzên dadresiyê ne pirsgirêk e bi heman sîstema tirk a bindestker hevkariya hiqûqî bikin."

Bi nerîna Staes bikaranîna du standardan li ba kurdan bêtir diyar dibe, ji ber berjewendiyên cuda-cuda yên rojavayiyan ku ji


Parlamenterê belçîkî Bart Staes

perçebûna Kurdistanê pêk tê: "Bi destnîşankirina kurdên ku bi gazên kîmyawî li bakûrê Îraqê hatin kuştî, bi awayekî neyasayî serdegirtina Îraqê kirin. Lê di heman demê de gava ku leşkeriya tirk li dijî heman gelî li başûrê rojhilatê Tirkiyê tawanan pêk tînin, weke hevpeymanên baş ên NATO'yê ew li aliyê din dinêrin."

### Şêwaza Al Capone

Staes ani ziman ku "Berî demekê senatorek bi navê Geert Lambert hebû, wî digot DYA pêşniyarî Belçîka dikir ku ew 'Şêwaza Al Capone' ji xwe re bikin rêbaz. Perên wan bibire û wan wisa lawaz bike. Min berê jî got, herçiqas dadgehê selmandibû ku peywendiya budçeya ROJ TV'yê bi tu awayî bi çalakiyên teroîstî yan tawankarî tune bû, dozgeriyê perêyên ROJ TV bo demeke dirêj bloke kirin."

Herçî PE çend caran ji Tirkiyê xwestiye ku azadiya ramanê berfirehtir bikin, "girtina rojnamevanan, serdegirtina studyoya wan û xerakirin yan birina cihazên wan çawa dikeve nav çarçoveya azadiya derbirînê?"

# Ewrûpa penaberên kurd û ereb naxwaze

## Di 5 salên borî de 4.250 penaber ji Ewrûpa bo Îraqê hatine şandin

**Dilbixwîn Dara** Bonn

Ewrûpa difikire ku li Kurdistan û Îraqê rewşa ewlekariyê baş bû ye û êdî weke berê metirsîdariyeke ku jiyana mirov bixe xeterê tune ye. Ji ber vê yekê çend welatên Ewrûpa weke Hollanda, Norwêc û Swêdê difikirin ku di demeke nêzîk de hejmareke penaberan, bi taybetî yên ku heta niha mafê rûniştinê nestandine, dersînor bikin.

Li van welatên ku navê wan ji bo dersînorkirinê derbas dibe, pirraniya penaberên kurd û yên Îraqî dijîn. Di vê derbarê de rojnameya Wall Street Journal bal kişande ser vê yekê ku ew welat wê lezê bidin dersînorkirina penaberên îraqî.

Helwesta Hollanda ji bo dersênorkirinê hinekî balkêş e. Li aliyekî ew diyar dike ku ewlekarî li Îraqê baş bûye û êdî penaber dikarin vegerin welatê xwe, li aliyê din jî malpera sefareta Hollanda li Bexdayê hişyariyê dide hemwelatiyên xwe û ji wan dixwaze ku ji ber tunebûna ewlekariyê ew neçin Îraqê.

Daxuyanî û belavbûna nûçeyên wiha penaberên kurd û ereb nerihet dikin. Ew malbatên ku jiyana xwe li van welatên Ewrûpî avakirin e, şert û merc li welatê wan çi bin jî, ew naxwazin vegerin. Bêguman rihetiya ku li van welatan ji wan re peyda bûye, li welatê wan peyda nabe.


Salana bi sedan penaber di rêya Ewrûpayê de jiyana xwe ji dest didin

Malbata Xoşnaw Şwanî ji Kerkûkê ye, li Almanya bajarê Stutgartê dimîne û ev 8 sal in hîn mafê penaberiyê wernegirtiye. Ew pirr xemgîn dibe dema ku xebereke wiha di rojname û malperan de dixwîne. Kak Xoşnaw dibêje ku ew gellekî ji welat hez dikin, lê zarokên wî li vir mezin bûne û naxwazin vegerin Kurdistanê.

Zarokên ku li Ewrûpa ji dayîk bûne, ji bo wan bêrîkirin û hezkirina ji welat hinekî bêwate ye. Ew hîn nizanin welatê bav û diya wan çiqas xweş e. Wan çavên xwe li Ewrûpa vekirine û ji bo wan welat ew welat e ku lê mezin bûne û zaroktiya xwe lê derbas dikin, ew xweşiyê li wir dibînin.

Niha li Almanya 40 hezar, li Swêdê 30 hezar û li Hollanda jî 15 hezar penaberên ji Kurdistan û Îraqê dijîn. Beşek ji wan penaberan bûne helwelatiyên wan welatan, lê beşekî mezin hîn penaber in. Hinek rapor destnîşan dikin ku di 5 salên dawiyê de ji Ewrûpa 4.240 penaber li Îraqê hatine vegerandin.

# Îsal Îtalya jî bo Helebce radiweste

**Köln (Rûdaw) -** Ji bo bîranîna qurbaniyên Helebce, roja 16'ê Adarê li herdu bajarên welatê Îtaliya, Lugo û Bolonia bo çend çirkeyan hatin û çûyîn radiweste. Li gor axaftinên Cîgirê Serokê Rêxistina Qurbaniyên Helebce, Aras Abid, ji bilî wan herdu bajarên Îtalyayê, li seranserî Îraqê jî di heman rojê de, di demjimêr 11.25 hatin û çûyîn bo çend çirkeyan radiweste. Beriya niha tenê li Herêma Kurdistanê bîranîna kîmyabarana Helebce dihat sazkirin.

Di roja bîraninê de, di 16'ê Adarê li bajarê Helebce jî merasîmeke bîranînê li dar dikeve û li gor rêvebiran "Wê bi şêweyeke pirr hêja bîranîna Helebceyê bê sazkirin." Tevî ku xelkê Helebceyê giliya piştguhxistina bajarê xwe dikin jî, lê ji wan re bîranîna îsal ji hemû salan cudatir e. Hîkmet Fayiq yê 40 salî ku di dema kîmyabarana sala 1988'an ya bajarê Helebce de ji 12 endamên malbata wî tenê 2 rizgar bûn, dibîne ku sedema eleqeya mezintir ew e ku "Elî Kîmyawî hatiye sêdaredan û karesata Helebce jî weke cenosîd hatiye nasandin û heta radeyeke baş hikumetê ji guhdariya azarên kesûkarên şehîdan kiriye."

New Yorkê û karkerên Ground Zero li hev kirin

# 657,5 milyon Dolar bo ziyandîtiyan

## Heşt salan piştî bûyera 11'ê Îlonê bajarê New York karkerên ziyandîtî qerebû dike

**Köln (Rûdaw) -** Pişti bûyera 11'ê Îlon a 2001'ê li New Yorkê, ew bûn ên ku kesên birîndar û laşê miriyan ji bin kavilan derxistin, agir vemirandin û avahiyên ruxayî hilweşandin û cihê avahiyek nû li şûna yek ji bilindtirîn avahiyên cîhanê, World Trade Center (WTC), amade kirin. Wan deh hezar kesên ku li ser înşeata WTC kar kirin, di dema karê xwe de gellek toz û dumana jehrî kişandin nav hinavên xwe û nexweş ketin.

Heşt salan piştî bûyerê, Şaredariya New Yorkê hefteya borî daxuyand ku ewê bi giştî derdora 657,5 milyon Dolarên amerîkî wekî alîkarî bide wan kesên ku di dema alîkarî û karkirina li cihê bûyera 11'ê Îlon zirara tenduristî dîtine. Kesên zerardîtî dikarin, li gor giranbûna zirara tendurustî, di navbera çend hezar Dolar heta bêtirî milyonek Dolar wergirin.

Di sala 2003'an de dozên yekemîn dest pê kirin. Heta destpêka 2008'an derdora 10.000 doz hatin vekirin. Doz li hemberî bajare New Yorkê û sîgortaya "World Trade Center Captive Insurance Company" ku ji aliyê wî bajarî bo qerebûkirina kesê zerardîtî hatibû avakirin, hatin vekirin. Şaredarê New Yorkê, Michael Bloomberg, lihevhatin "adil û çaresekirinek kêrhatî" bi nav kir.

Di nav kesên zerardîtî de herî zêde karkerên agirkuj, karkerên paqijkirinê û karkerên înşeatê hebûn. Piştî bûyera World Trade Center ji kesên ku di nav ewrekî toz û dûmana tijî madeyên jehrî kar kirin, gellekên wan bi nexweşiyên poz û qirikê ketin û nexweşiyên gellekan jî bû qansêr. Bajarê New Yorkê bi sedema ku bûyer xwedî dîmensyonek netewî ye û bajêr bo parastina karkeran her tiştê di hêza xwe de kiriye, destpêkê qerebûkirina qurbaniyan red dikir. Tevî vê lihevhatina dawî jî wê gellek kesên ku doz vekiribûn, sudê ji vê lihevhatinê negrin. Ew di encama nexweşiyên xwe de mirin.




**Di 11'ê Îlona 2001'ê de çar balafirên rêwiyan ji aliyên komên çekdar ku li gor dokûmentên saziyên îstixbarata amerîkî endamên Al-Qaîda bûne, hatin destgîrkirin û duyên wan balafiran bo bircên avahiya Navenda Bazirganiya Cîhanê (World Trade Center) li New Yorkê hatin firandin. Di encama êrişa bi balafiran Navenda Bazirganiya Cîhanê tevî çendîn avahiyên derdorê hilweşiyan û di encama de 2993 kesan jiyana xwe ji dest dan û bi hezaran jî birîndar bûn. Ji bilî WTC, di heman rojê de balafirek bi ser Wezareta Parastinê "Pentagon" û yek jî li nêzîkî Shanksville li eyaleta Pennsylvania hatin xwarê.**

---

Li Hindistinê

# "Gavek dîrokê bo azadiya jinê" hat avêtin

## Di maqezagona nû de wê rêjeya jinan di parlamenên Hindistanê ji seyan yek be

**Köln (Rûdaw) –** Di makezagona nû ya Hindistanê de ku niha tê amadekirin, wê rêjeya jinan di parlamenê de bibe ji sêyan yek, hem li parlamena netewî li paytext Dêliya Nû û hem jî di parlamenên herêmî de.

Van rojan baskê jêrîn yê Parlamena Hindistanê biryara bicihkirina rêjeya jinan ya ji sêyan yek di parlamenê de, qebûl kir. Qebûlkirina vê rêjeyê ji aliyê baskekî parlamena mezintirîn welatê demokratîk yê cîhanê weke gavekî mezin bo mafên jinan li Hindistanê tê hesibandin. Giftûgoyên li ser rêjeya jinan li Hindistanê ne nû ne û vedigerin beriya 13 salan. Ji bilî Partiya Kongresê ku serkêşiya hikûmeta niha dike, giringtirîn partiya hindûyîstan BJP jî piştgiriya reforman û rêjeya jinan dike.

Serokwezîrê Hindistanê Manmohan Singh giringiya qebûlkirina rêjeya jinan destnîşan kir û anî ziman ku jin li Hindistanê hîn jî tên dîskrîmînekirin. Singh got ku ji ber vê yekê reformên di vî warî de û qebûlkirina rêjeya jinan "gavekî dîrokî ye bo azadî û wekheviya jinê."

Vê gavê rêjeya jinan di nav siyaseta Hindistanê de gellekî kême. Di parlamenên Hindistanê de tenê ji sedî dehê parlamenteran jin in û di baskê jêrin yê parlamena netewî de ji 545 parlamenteran tenê 59 jin in. Di baskê jorîn yê parlamenê jî rewş bi awayekî nêzîkê yê baskê jêrîn e: ji 250 parlamenteran tenê 21 jin in. Eger pêşnûme bi giştî bê qebûlkirin û bibe qanûn, Hindistan wê bibe yek ji welatên xwedî rêjeya jinan ya herî mezin.




**Jinên Hindistanî ji bo mafên xwe dimeşin**

Beriya ku rêjeya jinan li Hindistanê bibe qanûn, pêwiste baskê jêrîn yê parlamenê jî pêşnûmeyê bi ji sêyan duyê dengan qebûl bike; ji bilê wê jî pêwiste ji 28 eyaletên Hindistanê herî kêm 15'ên wan bo rêjeya jinan dengê erê bi kar bînin.

---

### Nîjerya dikele: 500 Xiristiyanî hatin kuştin

**Köln (Rûdaw) –** Pevçûnên di navberan Misilman û Xiristiyaniyên Nîjeryayê dîsa bûn sedema mirina bi sedan kesan. Di encama serdagirtina sê gundên beromên Xiristiyanî ji aliyê fûlaniyên Misilman, hefteya borî derdora 500 kesan jiyana xwe ji dest dan. Berpirsên Nîjeryayî bûyerê weke tolhildana 300 Misilmanên ku di Çile de ji aliyê Xiristiyaniyan hatibûn kuştin, dinirxînîn.
Derdora nîvê 149 milyon nîştecihên Nîjeryayê Xiristiyanî û yên din jî Misilman in. Li herêmên bakurê Nîjeryayê ji sala 2000'an ve Şerîet hikûmdar e. Li başûre Nijeryayê ku ji aliyê çavkaniyên xwezayî ve dewlemend e, pirranî Xiristiyanî dijîn. Gellek çavdêr dibejin ku sedemên bingehîn yên nakokiyên di navbera bakur û başûrê Nijeryayê de ne ola cuda, lê çavkaniyên xwezayî ne.

### Qedexeya minareyan: Swîsre bi şermazarkirina Konseya NY re rûbirû ye

**Köln (Rûdaw) -** Di pêşbiryareke Konseya Mafê Mirovan a Netewên Yekgirtî de Swîsre ji ber qedexekirina minareyen mizgeftên Misilmanan tê rexnekirin û rûdan weke "şêweyekî Îslamfobiyê" tê binav kirin. Di pêşbiryarê hatiye gotin ku biryara swîsreyiyan dibe sedema dîskrîmînasyon, tundrewî û peşbaweriyan ku dikarin bibin sedema nakokiyên bi encamên xeter.
Di referandûmeke Kanûna sala borî de swîsreyiyan ji bo qedexeya avakirina minareyên mizgeftan li ser xaka Swîsreyê deng dabûn. Însyatîfa ku ji aliyê du partiyên rastgir hatibû destpêkirin, ji sedê 57,5'ê dengan wergirtibû. Encama referandûmê li pirranî welatên Misilman bûbû cihê nerazîbûnên tund.

### Parlamena Swêdê jî got: Komkujî !

**Köln (Rûdaw) –** Hefteya borî Parlamena Swêdê bûyerên li dijî ermeniyan di salên 1915-1917 li ser xaka dewleta Osmanî ku îro dikeve nav sînorên Tirkiyê, weke komkuijî qebûl kir. Piştî biryarê Hikûmeta Tirkiyê nerazîbûna xwe nîşan da û balyoza xwe ya li Swêdê Tergün Korutürk vekişand. Korutürk got ku cihê xemgîniyê ye ku "parlamentên swêdî hewl didin ku rola dîroknasan bilîzin". Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan jî serdanek xwe bo Swêdê ku wê vê hefteyê pêk bihata, betal kir.
Wezîrê Derve yê Swêdê Carl Bildt - ku ji bo redkirina pêşnûmeyê bangî parlamenteran kiribû - ji ber encama dengdanê dilgiraniya xwe anî ziman û got ku ew bi guman e ku biryara Parlamena Swêdê zirarê bighîne pêvajoya lihevnêzîkbûna di navbera Tirkiye û Ermenistanê.

# Xarpêt de erdlerz

**Xarpêt (Rûdaw) -** Roja 07.03.2010, destê serê sibayî, saete 04.32 de qezaya Xarpêtî Depe û Qowancîyan de erdlerzêk şîdetê xo derece 6.0 virazîya. Netîceyê erdelerzî de 41 kesî merdîy, 74 kesî zî birîndar bîy.

Tewr zêde telefatîye bananê kehenan ê ke kerpîçan ra viraşteyê de virazîya. Banê ke beton ra viraşteyê de tu xisarêk nêbi la banê ke kerpîçan ra viraşte bîy, heme rijîyay. Însan û heywanê ke telef bîy, heme binê bananê kerpîçinan de mendbîy.

Erdlerzê girdî ra pey mîyanê 12 saetanê verênan de 84 rey erdlerzê qijî virazîyay. La nê erdlerzan de hetê can û malî ra tu xisarêk nêbîye. Badê ke xebera erdlerzî vila bîye, sere de wîlayet û qezayê derûdorî, zaf cayan ra dezgeyanê resmî û sivîlan seba ardimî û xelisnayîşê merdimanê ke binê enqazî de mendê kewtîy rayîr û demeyêko kilm de xo resna bi cayê erdlerzî. Eynî roje de kon û çadirî ronîyay û ardimo ke hewce kerdêne resna bi mexdûranê erdlerzî.

Gelek karbidest û wezîrê hukmatî zî seba teftîşî amey cayê erdlerzî û beyan kerd ke seba mexdûran do demeyêko nêzdî de dest bi viraştişê bananê neweyan bikerê. Ê ke banê înan raşanîyayê, hetanî ke banî bivirazîyê do konan de bimanê.



Banê kerpîçinî mîyanê çend sanîyeyan de rijîyay

## UNESCO Kela Hewlêrî restore keno



Kela Hewlêrî ya tarîxî mîyanê şaristanê Hewlêrî de ya

**Hewlêr (Rûdaw) -** Teşkîlatê Perwerde, Zanist û Kulturî yê Miletanê Yewbîyayan UNESCO Kela Hewlêrî ya tarîxî ke paytextê Kurdîstanê Başûrî Hewlêr de ya û dorûverê aye do restore bikero.

Derheqê nê restorasyonî de roja 09.03.2009 mîyanê walîyîya Hewlêrî û UNESCO ke di peymanî amey îmzakerdiş. Merasimê îmzakerdişê peymanan de ke Kela Hewlêrî de virazîya, walîyê Hewlêrî Newzad hadî va, "Merheleya verêne yê peymane do 3 serrî dewam bikero, merheleya diyine zî restorekerdişê semtê Ereb, Xaneqa û Tecîlî gêna mîyanê xo."

Temsîlkarê ONESCOyî Muhemed Celîdî zî merasim de va, "Kela Hewlêrî dosaya kulturê cîhanî ke ma ser o xebitênê de bi hawayêko muweqet şinasîyaya. Restorasyon seba bi hawayêko daîmî şinasîyayîşî yew destpêk o."



Kela Hewlêrî ra yew manzara

# Îraq de weçînayîş

**Seba 325 kursîyanê parlamentoyê merkezî yê Îraqî 300 ra vêşêr partîyê sîyasî û 6 hezarî ra vêşêr namzedî kewtîy weçînayîş**

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Roja 7 adare 2010 de hemeyê Îraqî de seba kursîyanê meclisê merkezî yê Îraqî weçînayîşê pêroyî virazîya û şar seba weçînayîşê 325 parlamenteran şi serê sindoqe.

Îraq de weçînayîşê pêroyî reya verêne 15 kanune 2005 de virazîyay. Weçînayîşo verên de erebanê sunnîyan yê Îraqî ke zafê înan terefdarê partîya Baasî bîy, weçînayîş boykot kerdbi la weçînayîşê diyine de erebê sunnî zî beşdar bîy.

Roja 7 adare 2010 de hemeyê Îraqî de weçînayîşê pêroyî yê diyine virazîyay. Goreyê fikrê pisporan weçînayîş dereceya ke ameyê hêvîkerdiş ra hîna serkewte vîyart û hêvîya ronîştişê demokrasî vêşêr bîye.

Nufûsê Îraqî heme 28 mîlyonî yo, 18 mîlyonî û 600 hezar raydayoxê qeydkerdeyî estê. Goreyê malumatanê ke komîsyonê weçînayîşî yê Îraqî dano, no weçînayîş de pêroyê Îraqî de se ra 62.40 yê raydayoxan şîyê serê sindoqe. Nê zî kenê 12 mîlyon raydayoxî. Labelê mintiqaya Kurdîstanî de na hûmare zaf berzêr a. Mesela Duhok de se ra 80, Hewlêr de se ra 76, Silêmanîye de se ra 73, Kerkûk de se ra 73 ray ameyê eştiş.

Goreyê tayê dezgeyanê ke çimdarîya weçînayîşî kerdo, çar lîsteyê ke tewr zêde rayî girewtê, nê yê: 1.Lîsteya Îtîlafê Dewleta Qanunîye, 2.Lîsteya el-Îraqîye, 3.Lîsteya Îtîlafê Welatî yê Îraqî û 4.Lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî.

Seba 325 kursîyanê parlamentoyê merkezî yê Îraqî 300 ra vêşêr partîyê sîyasî û 6 hezarî ra vêşêr namzedî kewtîy weçînayîş. Roja weçînayîşî Kurdîstanê Başûrî de tu bîyena xirabe çin bîye la hetê erban de, şaristananê sey Bexdad, Felluce, Beqube û Mûsil de netîceyê êrîşanê bombayînan de tewr tay 35 kesî merdîy gelek kesî zî birîndar bîy. Telefatîya tewr girde Bexdad de bîye. Netîceyê teqayîşêk de bînayêk rijîya, tam 25 merdimî bin de merdîy.

Goreyê malumatê ke muşahidê Miletanê Yewbîyayan û yê xoserbîyayeyî danê, weçînayîş bi hawayêko şefaf û demokratîk vîyarto. La hewna zî tayê cayan de îdîa bi ke weçînayîş de bêrayî û hîle bîyo. Mesela, tirkmanan û lîsteya Goranî (vurnayene) ke lîderîya Noşîrwan Mistefayî de hereket kena, lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî sucdar kerd ke zafê cayan de bêrayî kerda û verê Komîsyonê Berzî yê Weçînayîşî de gereyê lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî kerd.

Kurdîstanê Başûrî de lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî ke 13 partî û grûban ra teşekul bîya, serdest vejîya. Gerçî hîna zî netîceyê weçînayîşî îlan nêbîyo la goreyê malumatê ke dîyenê, şaristanê Duhokî de des kursîyan ra newê înan lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî girewtê, yew kursî zî Yekgirtûyê Îslamî girewt.

Paytextê Kurdîstanê Başûrî Hewlêr de zî çarês kursîyan ra heşt hebî lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî, di hebî lîsteya Goranî, di hebî Yekgirtûyê Îslamî û Komela Îslamî zî yew kursî girewt.

Silêmanîye de lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî û lîsteya Goranî reqabetêko pîl kerd. Par aşma temuze de weçînayîşê parlamentoyê îdareyê Kurdîstanî de hereketê Goranî mintiqaya Silêmanî de bibi yewin. Nê weçînayîşî de merkezê Silêmanîye de lîsteya Goranî bîye yewine la dorûverê Silêmanîye de nişêna rayanê parî bigîro. Silêmanîye de hewtês kursîyan ra lîsteya Hempeymanîya Kurdîstanî şeş, lîsteya Goranî şeş, Yekgirtûyê Îslamî û Komelaya Îslamî zî her yewî yew kursî girewt.

Kerkûk de zî tewr tay se ra şeştîyê rayan kurdan girewt. Nê weçînayîşî reyde kurdî meselaya Kerkûkî de de gamêna aver şîy. Çunke Kerkûk de rayê ke kurdan girewtê pêroyê rayanê ereb û tirkmanan ra vêşêr ê. Bi no qayde bi hawayêko rastko îsbat beno ke Kerkûk fiîlen şaristanê kurdan o. Kurdî do hende rehet fek nê şaristanî ra veranêdê.

Wina aseno ke mucadeleyo tewr gird badê weçînayîşî dest pêkeno. Mesela, roja badê weçînayîşî lîderanê lîsteya el-Îraqîye ra Usame el-Necefî ke şovenîstêko ereb û muxalifê kurdan o, beyanatê xo de va, ma bin ra nêwazenê Celal Talebanî bibo serokkomarê Îraqî. Xora, verê ey zî Tariq Haşîmî qanûnê bingeyînî îhlal kerd û va "Îraq dewletêka ereb a, ganî kesêko ereb bibo serokomar."

## Parlamentoyê Swêdî jenosîdê armenîyan qebul kerd



Bînaya parlamentoyê Swêdî

**Stockholm (Rûdaw) -** Pêşnumaya jenosîdê armenîyan ke roja 2 adare 2010 de komîsyonê peywendîyanê teberî yê Swêdî de muzakere bibî, roja 11 adare 2010 de ameye rojevê parlamentoyê Swêdî.

Pêşnumaya ke zafane hetê partîyanê çepan ra piştgirîye dîyêne, parlamentoyê Swêdî de 130 rayê redî, 131 zî yê qebulî girewtîy û qebul bîye. Yanî, êdî Swêd zî bi hawayêko resmî qebul keno ke tirkan 1915 de armenî kokbir ra qir kerdê û jenosîd tetbîq kerdo.

Badê ke parlamentoyê Swêdî jenosîdê armenîyan qebul kerd, serekwezîrê Tirkîya Receb Teyîb Erdogan ke ganî roja 17ê adare Swêd zîyaret bikerdêne, şîyayîşê xo betal kerd. Serekwezîrîya Tirkîya beyanatê protestoyî da û va, "Ma qebulkerdişê pêşnuma bi şîdet protesto kenê. Şarê ma û hukmatê ma nê qerarê bêdelîlî red keno." Serekkomarê Tirkîya zî mulaqatê xo de va, "Ma zaf hol zanê ke nê qerarê winasî senî gêrîyenê. Ma het tu îtîbarê xo çin o."

No mîyan de balyozê Tirkîya yê Swêdî Zergun Koruturk seba muzakereyî bi Anqera ame vengdayîş. Qerarêko winasî çend rojî ra ver komîsyonê peywendîyanê teberî yê meclisa temsîlkaran yê DYA de zî bi ferqê rayêk amebi qebulkerdiş. Tirkîya seba muzakereyî venga balyozê xo dabi.

# Operasyonên ewrûpî û kurd

Roja 4'ê Adar'ê li Belçîkayê operasyonek li dijî ROJ TV, KNK û bûroya BDP'ê pêk hat. Di roja destpêkê de pirr kes hatin binçavkirin, lê di nava demeke kurt de pirraniya wan hatin berdan. Vê gavê Serokê Kongra-Gel birez Remzî Kartal, aligirê wî birêz Zubeyir Aydar û çar kesên din girtî ne. Wisa diyar e ku di rojên pêş de careke din mehkeme çêbibe, em hê nizanin wê encam çawa be.

Li gorî hin derdoran ev operasyon ne ya Belçîkayê ye. Tê gotin ku ferman ji aliyê Amerîkayê ve hatiye dayîn, Ewrûpayê jî ev kar daye Belçîkayê. Yanê ev operasyon ji aliyê Amerîkayê ve hatiye xwestin lê Yekîtiya Ewrûpayê pêkaniye. Heman nirxandin ji aliyê Murat Karayilan ve jî hate kirin, di nava girseya kurd de jî ev nêrîn xwediyê qenaeteke mezin e.

Di vê navberê de min li Strasbourgê bi çend rayedarên Ewrûpî re hevdîtin pêk anî. Min hevdîtin bi nasnameya xwe a rojnamevaniyê pêkanî û ji wan heman pirs kirin. Tişta ku min ji ewrûpiyan fêm kir; ev operasyon li gorî fermana Amerîkayê çênebûye. Lê belê ew bi xwe jî baş nizanin di bingeha wê de çi sedem hene. Ez bawerim di serê pirraniya rayedarên belçîkî de jî pirr guman hene. Tenê tişta ku zêdetir tê bilêvkirin ev e; ji sê salan vir ve rayedarên ewlekariya belçîkî di derbarê saziyên kurdan de lêkolînê dikin, xebatên wan dişopînin, di encamê de wan ev operasyon pêwîst dîtiye. Ev gotineke dadî ye, ji bo ku hin rastî werin veşartin li her deverê heman hevok têne ziman. Bêguman kurd bi van gotinan razî nabin, divê rastiya li pişt perdê were aşkerekirin.

Bi pêkhatina vê operasyonê careke din me baş dît ku welatên Yekîtiya Ewrûpayê pirr durû, qirêj û zalimane nêzîkê gelê kurd dibin. Hate xuyan ku parastina demokrasiyê û mafên mirovan tenê ji bo berjewendiyên ewrûpiyan dikevin rojeva wan. Mesele tenê ew nîne ku ewrûpî zerarê bibînin, heke ew bizanibin feyde digehêje berjewendiyên wan, li ku dera cîhanê dibe bila bibe, ew dikarin bikevin nava hewldanên bêqeyde. Mixabin, ev rastî ji bo hemû hêzên desthilatdar naguhere.

**AHMET DERE**



> "Tişta ku min ji ewrûpiyan fêm kir; ev operasyon li gorî fermana Amerîkayê çênebûye. Lê belê ew bi xwe jî baş nizanin di bingeha wê de çi sedem hene."

Tê zanîn ku di heman roja 4'ê Adarê de li Amerîkayê, di Komîteya Karê Derve ya Meclîsa Nûneran de pêşniyazbiryara di derbarê Komkujiya Ermeniyan de hate erêkirin. Bêguman vê mijarê di serê pirr kesan de, bi taybetî di nava kurdan de, hinek pirs peyda kiriye. Ji aliyê pirr derdoran ve operasyona ewrûpiyan û heman mijar bihev re hatine girêdan. Çiqas jî rayedarên ewrûpî vê girêdanê qebûl nekin û pêkhatina her du mijaran weke tesaduf bibînin jî, di bingehê de rastiyek heye. Lê belê ev nayê wateya ku YE'yê li gorî daxwaza Amerîkayê ev operasyon pêk aniye. Girêdana wan bihev re tişteke din e, sedemên pêkanînê tişteke din e. Divê cudahiya di navbera van her du xalan de baş were dîtin.

Li gorî min operasyona Belçîka-Ewrûpayê weke mesajekê ji bo Tirkiyeyê pêk hatiye. Di van rojan de di navbera rayedarên tirk û ewrûpî de niqaşên tund, ên di derbarê pêvajoya guftûgoyan de dimeşin. Dewletên weke Belçîka, Fransa û Almanya li dijî endametiya Tirkiyeyê ne. Lê belê ew naxwazin Tirkiyeyê jî ji xwe dûr bixin. Di dema ku li Amerîkayê mijara Komkujiya Ermeniyan tê niqaşkirin û reaksiyona tirkan dikêşe ser vê hêzê, ewrûpiyan xwest gulê nêzîkê Tirkiyeyê bikin. Bi vê ew dixwazin bêjin 'Em ji Amerîkiyan zêdetir nêzîkî we ne. Çendî em we negirin nava xwe jî, (nava YE'yê) em tim li gel we ne'. Ez di bingeha operasyona ewrûpiyan de vê rastiyê û her wiha durûtiyê dibînim.

Ji roja destpêkê vir ve girseyeke mezin ya Kurdan li ser piyan e. Li pirr welatên Ewrûpayê, bi tevlêbûna cur be cur derdoran, çalakiyên şermezarkirinê hatin lidarxistin. Heke ev doz bi awayeke maqûl neyê bidawîkirin, ez bawer im wê zerar bigehêje têkiliyên Ewrûpayê û kurdan. Ev ne di berjewendiyên Ewrûpayê û ne jî di yên kurdan de ye.

# Demokrasiyê sîstema Fifty-Fifty guhart

Li gor encamên destpêkê yên hilbijartinên Parlemana Îraqê, Partiya Demokrata Kurdistan - PDK li Kurdistanê di rêza yekê de ye. Ji texmînan zêdetir jî PDK deng standine. Li gor encamên ne fermî tê texmîn kirin ku ji sedî 39'ê dengên kurdan PDK birine. Ji sala 1991 ê heya îro cara yekê ye bi vî awahî cudabûnek eşkere di navbera YNK û PDK'ê da derdikeve. Heya îro bi awayê fifty-fifty (nîv-nîv) hertişt wek hev dihat parvekirin, lê demokrasiyê ev rewş guhart, pirranî xelkê Kurdistanê baweriya xwe dan PDK'ê. Bê guman ev encam ew ê gellek bên giftûgokirin, gellek alî ew ê vê rewşê binirxînin, gellek helwêst jî ew ê derkevin holê. Lê pirsa herî giring di vir de renge herkes bipirsî gelo nêhêniya vê serkeftina PDK'ê çi ye? Ev pirs ew ê gelek bê pirsîn, gellek li ser vê pirsê ew ê bê sekinandin? Giringe bersivek rast, dûr ji soz û meyildariyê ji vê pirsê re werê dayîn.

Ji herkesî zêdetir ez bawerim YNK û Bizava Goran ew ê li ser vê pirsê bisekinin ji ber ku wan deng winda kirin û PDK'ê deng qezenc kirin. Ew ê bipirsin sedem çi ye? Misoger gellek nêrîn ew ê derkevin. Tiştê di serî de tê bala min, renge YNK'yî bibêjin perçebûna Goran sedema serekeye ji bona windakirinê ye, ev nêrîn heya derekê ew ê rast be. Lê li gor nêrîna min ne sedemê sereke ye, ji ber ku dengê ku YNK winda kirine hemî ji Goran re neçûne, li gor encaman hindek ji PDK û hindek jî ji Goran re çûne. Lê dihat pêşbînî kirin ku dengên xelkê nerazî tev ji Goran re biçin, lê ev encam weha nedihatin xuyanîkirin. Eger teva deng daban Goran diviya Goran dengên zêdetir baniyana, lê gellek dengên ne razî bo PDK'ê çûne. Bi nêrîna min ev xal gellekî giring e, wate dikarim bêjim, gellek kesên ku di hilbijartinên Kurdistanê de deng dane Goran di van hilbijartinên Îraqê de deng dane PDK. Ji ber çi? Tiştê tê serê min Helwêstên netewî

**MUSTAFA ŞEFÎQ EDILBÎ**



> "Gellek alî ew ê vê rewşê binirxînin, gellek helwêst jî ew ê derkevin holê. Lê pirsa herî giring di vir de renge herkes bipirsî gelo nêhêniya vê serkeftina PDK'ê çi ye?

yên PDK'ê di van salên piştî rizgarkirina Îraqê li heya niha sedema sereke ye.

Gelê Kurdistanê di hilbijartinên Îraqê de weke hilbijartinên Kurdistanê tevnegera û ji bona berjewendiyên giştî yên netewî baweriya xwe dan PDK'ê. Hem YNK hem jî Goran di van salan de zêdetir giraniya xwe dane ser pirsên Îraqî û pirranî çareseriya mesela di çarçovê Îraqê de digerin, lê PDK'ê berevajî vêna pêdagirî li ser meseleyên Kurdistanî kirine, peywendiyên netewî yên PDK'ê bi hêzên Kurdistanî û bi perçeyên dinî Kurdistanê re mukumtirin, hemahengiya netewî ya PDK bi giştî kurdan re bi hêztire. Evê çendê baweriyek zêdetir di nava xelkê Kurdistanê de çêkiriye, ev jî bûye eger ku xelk zêdetir baweriyê bide PDK'ê. PDK dikare di perlemana Îraqê de berjewendiyên wan ên netewî biparêze, ev hem hêzek zêdetir dide PDK'ê, hem jî barê PDK'ê girantir dike. Bi vê rewşê PDK li hember pêvajoyek dîrokî rû bi rû dimîne, PDK dikeve bin barek dîrokî, tevaya pirsên bêçare mane li pêş PDK disekinin, serkeftina di van erkan de ew ê hêzek meztir bide PDK'ê, berevajî vêna xemsarî li hember van erkan ewê hêza PDK'ê wenda bike. Ji bona hêzên din jî ev encam gellek giring in. Ev encam carek din îspat dike di Kurdistanê de pirsa herî giring pirsa netewî ye, yê ku pişta xwe bide vê pirsê, ew çi hêzek be, ayînî an jî sosiyal – demokrat, an jî çepên radîkal, şansê serkeftinê ji wî re nîne. Divê beriya her tiştî netewî be, eger na şansê jiyanê jêre nîne.

## Ji Xwîneran

### Hêvîdar im Rûdaw bimîne û serkeve

Bi dilxweşî takerojnameya kurdî ya li Ewrûpa dixwînim, lê belê bila rojnameya we êdî dev ji hevpeyvînên klasîk berde. Yekem, ji kesên ku nêrînên taze pêşkêş nakin bila tişt neyên pirsîn. Baştirîn nimûne hejmara Rûdaw a berê bû, hevpeyivînek hebû digel rojnamevanekî ku digot 'bila dewlet uzrê xwe ji kurdan bixwaze, projeya TC'yê vala ye' filan û fîstan. Ez nabêjim ev rast e yan na, lê belê ewa ku ez dixwazim hevpeyivîneke mîna hevpeyvîna digel Kendal Nezan e, ku li jêr hevpeyivîna klasîk a navborî hatibû weşandin. Ji ber ku herçiqas herkes Kendal Nezan nas dike jî, di nêrînên wî de tiştên taze hebûn, analîzên nû. Careke din, ne xema min e rastbûn yan na, tenê daxwaz dikim rojnameya we xwe bi peyva 'Nûçe' (Nû çi heye?) bibeste.

**Ehmed Avcî - Brûksel**



### Gelo jin bû yan mêr?

Di rûpela sêyemîn a hejmara 35'an a Rûdaw de, li bin sernavê "Berê xwe bidin Qendîlê!" raporek hatibû weşandin. Wê raporê mêjiyê me tevlihev kir, me rastî û ramana wê qet fêm nekir û me nezanî ka ew berdevka Komeleyê bû yan berdevkê Komeleyê bû ku digot: "Berê xwe bidin Qendîlê!" Ango me nezanî ew nêr e yan mê ye? Ji ber ku di sernivîsê de "Berdevka" hatibû nivîsandin, lê di nava nivîsê de "Berdevkê" hatibû nivîsandin. Herwiha heman tevlihevî di wêneyê de jî hebû: wêneyê jinekê hatibû danîn, lê li jêr wêne navê mêran (Sebrî Behmenî) hatibû nivîsandin.

**Kemal Özçelik -Pforzheim**

***Bersiva Redaksiyonê:***
*Li Rojhilatê Kurdistanê Sebrî navê jinan e. Berdevka Komele – Baskê Yekgirtinê, Sebrî Behmenî ye û Sebrî Behmenî jî jin e.*



**Nêrîn, Rexne, Pêşniyaz?**
Ji vir re bişîn:
**info@rudaw.eu**




LGBT'yên kurd li Amedê bo mafên xwe dimeşin

# Hevzayendên kurd mafên xwe dixwazin

**Amed (Rûdaw) -** Nerazîbûnên li hemberî wezîra tirk a malbat û jinan, Selma Aliye Kavaf berdewam dikin. Kavaf gotibû "mîrovên homoseksûel nexweş in, pewîste werin dermankirin."

Li ser van daxuyaniyên wezîra tirk Hewldana Civaka Sivîl a Homoseksûelan - LGBT (lezbîyen, gay, bîseksûel û transseksûel) li Dozgeriya Komarê ya Enqereyê gilîye Kavaf kir. Bo nerazîbûna ji daxuyaniya Kavaf homoseksuelan li gellek bajaran çalakî li dar xistin û bal kişandin ser cudawaziya sîstematîk ku li ser homoseksûelan berdewam e.

Berpirsiyara LGBT Neslihan Uras di daxuyaniya çapemeniyê de Kavaf rexne kir û got: "Pêwîstiya me ne bi dermankirinê, lê pêwîstiya me bi mafên mirovan heye." Uras anî ziman ku ew tên teşhîrkirin û dibe ku ev yek di rojên pêş de xetereyên pirr mezin derxîne ortê: "Gellek beşên civakê rastiya me qebûl nakin û gellek caran em bi êrîşên paşverû re rûbirû dimînin."

Homoseksûelên kurd jî li Amedê wezîr Kavaf şermezar kirin û meşek li dar xistin. Homoseksûelên kurd bal kişandin ser kuştina kesên hevzayendî û diyar kirin ku ew li benda mafên xwe û nezikbûneke bi rûmet in.

# 'Qasida niyetbaş' a UNICEF'ê



Lîstikvana navdar Türkan Şoray jî bu 'Qasida niyetbaş a UNICEF'ê ya Tirkiyeyê'.

Di merasimeke li Stenbolê ku çend berpirsên UNICEF'ê (Weqfa Alîkariyê ya Zarokan a Neteweyên Yekgirtî) jî amade bûn, hûnermenda tirk a naskirî weke 'Qasida Niyetbaş a UNICEF'ê' hat detnîşankirin. Hunermendên navdar ên wekî Emmanuelle Beart û Whoopi Goldberg jî bi rêya UNICEF'ê alîkariya zarokan dikin û di vî warî de xebata xwe didomînin. Di nav 'Qasidên niyetbaş ên UNICEF'ê' de şeqsiyetên wekî melîka Urdunê Rania, stranbêja navdar Şakira, lîstikvanê futbolê yê îngilîz David Beckham û lîstikvana navdar Angelina Jolie jî heye. Li Tirkiyeyê jî, di nav wan de şanoger Yıldız Kenter û nivîskar Ayşe Kulin jî hene, çendîn kes 'Qasidên Niyetbaş' ên UNICEF'ê ne.



Nicolas Sarkozy û Carla Brûnî li gel Serokê Rûsyayê Dmitri Medvedev û hevjîna wî Swetlana Medwedewa

# Memikên jina Sarkozy ji "devên" rojnamevanan dernakevin

**Dilbixwîn Dara**

Jina serokê Fransa Sarkozy, Carla Bruni her demê bi hinek kiryarên xwe ji mêrê xwe re belayan çêdike. Xanima yekemîn a Fransa, her mehê çend caran skandalekê derdixîne û cîhana magazînê bi xwe re mijûl dike. Serkozy ku xwe fêrî wan skandalan kiriye, ji ber vê yekê serê xwe qet bi wan nûçeyan naêşîne.

Berî demekê wêneyên wê yên erotîk di medyayê de bûne manşêt. Skandala dawiyê jî memikên wê bûn. Di civîneke xwarinê de ku li ser şerefa serokê Rûsya, Medvedev hatibû dayîn, jina Sarkozy Carla Bruni, sutyen li xwe nekirin. Lixwenekirina sutyenan di heman rojê de di bultenên nûçeyan de bûne manşêt.

Bruni kincên teng li xwe kiribûn û ji ber ku sutyen li wê tune bûn, memikên wê di bin kincên teng de xuya dikirin. Ev dîmen bala peyamnêr û fotografan dikişîne. Li ser vê yekê yek ji mezintirîn rojnameyên îngilîzî Times pirs kir: "Lazim bû ku Bruni sutyen li xwe kiriba?"

Her çiqasî belavbûna wan nûçeyan ji bo Bruni bi xwe ne tiştekî mezin bû jî, lê di nava rojnamevan de bû cihê giftûgoyan. Hinekan piştgirî dan lixwenekirina sutyenan, gotin mafê wê heye ku sutyen li xwe neke. Hinek jî li dij derketin û qebûl nekirin ku memikên wê di bin kincan de, di hevdîtineke dewletî de eşkere bibin.

Ev minaqeşe li gellek welatên din ên Ewrûpa belav bû. Li Îtalya jî televîzyona Italia 1 ew munaqeşe derbasî ekranê kir. Televîzyona navdar a ku gellekî tê temaşekirin, rapirsînek li ser sutyen û memikên Carla Bruni çêkir. Jina serokê niha yê Fransa, Carla Bruni berê topmodelek bû. Temenê wê 41 sal in, ew bi eslê xwe îtalî ye û di sala 2008'an de hemwelatiya fransî wergirtiye.

Pêwistiya Barack Obama bi pereyan tune

# 1,4 milyon Euroyên ji Xelata Nobelê dide xêran



Barack Obama li gel endama Komîteya Xelata Nobelê, Kaci Kullmann Five, li Şaredariya paytexta Norwêc Osloyê

**Köln (Rûdaw) -** 10 sazî û rêxistinên sivîl û xêrxaz dikarin li benda pereyakî baş bin. Tevaya pereyên Xelata Nobelê ya Aştiyê ku nirxê wê 1,4 milyon e, Obama wê li wan parve bike. Tevî ku gellek kesan dayîna Xelatê Nobelê bo Obama di Cotmeha borî de rexne kirin, lê Obama niha soza xwe bi cih tîne û pereyên ji xelata Nobele li sazî û rêxistin civakî û xêrxwaz parve dike.

Weke ku Qesra Spî daxuyand pere wê bi ser 10 saziyên xwendekaran, rêxistinên leşkeren amerîkî ku tevlî şer û cengan bûne û çendîn saziyên xêrxwaz bên dabeşkirin. Yek ji wan saziyan, saziya kevneleşkerên amerîkî "Fisher House" e ku wê 250.000 Dolar wergire. 200.000 Dolar jî bo Fonda Clinton-Bush ku alîkariya qurbaniyên erdheja Haîtî dike, tên pêşkeşkirin. Obama di derbarê parvekirna pereyên xwe bo wan sazî û rêxistinan: "Ez serbilind im ku karibim piştevaniya karê wan bikim."